# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

ISSN 2148-5305

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 120 03 - 09 Cotmeh 2016 basnuce.com



OHAL'ê li televîzyonên kurdî xist

zarok TV

R12


Serdana Barzanî ya Îraqê

# Sefera serxwebûnê bo Bexdayê

Di serdana Serokê RHK'ê Barzanî ya Bexdayê ku li Rojhilata Navîn bi baldarî hat şopandin de babetên serekî serxwebûn û rizgarkirina Mûsilê bû. Barzanî bi şandeyeke ku ji hemû nûnerên siyaseta kurd pêk dihat li Bexdayê digel rayedarên Îraqê referandûma serxwebûnê û têkiliyên kurd û ereb nîqaş kir. Çavkaniyên RHK'ê diyar dikin ku Barzanî li ereban pêşniyar kiriye ku Hewlêr û Bexda bi rêyên aştiyane ji hev veqetin.

Mijara din ya hevdîtinên Bexdayê rizgarkirin û piştî DAÎŞ'ê rewşa Mûsilê bû. Barzanî di derbarê girêdana xaka kurdnîşên ya heremê de bibiryarbûna xwe ji bo siyaseta ereb diyar kir. Çav li rê ye ku piştî rizgarkirina Mûsilê li heremê bûyerên balkêş biqewimin. Di nav bendewariyên çavderên siyasî de jihev veqetîna Îraqê, guherîna rewşa Sûriyê û Rojava û rewşa proseya Tirkiyê jî heye.




Li Rojava nîqaşên serjimêriyê R06

Awê roşnayî ya R13

Deriyên Xana Hasan Paşa tê girtin? R14




Siyasetmedar M. Emîn Pencwînî:

## Qendîl bo çareseriyê amade ye

"Bi baweriya min Qendîl ji navbeynkariya hemû aliyan re amade ye, Serok Barzanî be, Hikûmeta Herêmê Kak Neçîrvan be û kesayetên siyasî û her kes ku pêwendiya wan bi hikûmeta Tirkiyê re hebe bixwaze navbeynkariyê bike dibe pêk were, ew amade ne."


R08-9


Mesrûr Barzanî:

## Guman ji bidawîbûna DAIŞ'ê de nakim

Mûsteşarê Ajansa Ewlehiya Kurdistanê Mesrûr Barzanî derbarê rizgarkirina Misûlê ji destê DAIŞ'ê ji civînên xwe yên bi fermandarên Pêşmerge û nûnerên welatên Hevpemana Navnetewî didomîne. Barzanî derbarê prosesa piştê rizgarkirina bajêr de jî diyar kir ku piştê rizgarkirina Misûlê ji destê DAIŞ'ê hewce ye di nav mîletan de peymaneke siyasî bê çêkirin.




R04-5

## Serdana Barzanî ya Îraqê

# Sefera serxwebûnê bo Bexdayê

Mehmet Salih Batırhan

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di serdana xwe ya Bexdayê de ku li Rojhilata Navîn bi baldarî hat şopandin de babetên serxwebûn û rizgarkirina Mûsilê anî pêşberê siyasetmedarên ereb. Di şandeya Barzanî de hemû nûnerên siyaseta kurd cihên xwe girtin û li gor pisporan ev yek jî piştgirî û yekdengiya kurdan di derbarê têkiliyên bi ereban re aşkere kir. Barzanî li Bexdayê digel rayedarên Îraqê referandûma serxwebûnê û têkiliyên kurd û ereb nîqaş kir. Rayedarên RHK'ê diyar dikin ku Barzanî pêşniyara veqetîna bi rêyên aştiyane ya Hewlêr û Bexdayê li ereban kiriye.

Girîngtirîn mijara din ya hevdîtinên Bexdayê operasyona rizgarkirina Mûsilê û piştî DAİŞ'ê rewşa bajêr bûye. Barzanî di derbarê girêdana xaka kurdnîşên ya heremê de bibiryarbûna xwe ji bo siyasetmedarên ereb diyar kir.

Herwiha pispor dibêjin hemû katjimêrên siyaset û hêzên heremê li gor Operasyona Mûsilê hatiye eyarkirin. Çav li rê ye ku piştî rizgarkirina Mûsilê li Rojhilata Navîn bûyerên balkêş biqewimin. Di nav bendewariyên çavderên siyasî de jihev veqetîna Îraqê, guherîna rewşa Sûriyê û Rojava û rewşa proseya Tirkiyê jî heye. Barzanî di serdana xwe ya Tirkiyê de amajeyê vê yekê kiribû.

Serdana Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî ya ku di nava hefteyê de ji bo Bexdayê pêk anî bû, bû mijara sereke ya rojeve çapemeniya Rojhilata Navîn. Serokê RHK'ê Barzanî piştî 5 salan digel nûnerên partiyên siyasî yên RHK'ê serdana Bexdayê kir û bi Bexdayê re kete nava bazar û pêwendiyên dîplomatîk. Serokê RHK'ê bi rayedarên Îraqê re li ser mijarên referandûma serxwebûnê ya RHK'ê, têkiliyên Hewlêr û Bexdayê û Operasyona Misûlê axiviye.

Pêkhatina hevdîtinê ya beriya Operasyona Misûlê, beriya serdanê hevdîtina Cihgirê Serokê Amerîkayê Joe Biden ya bi rêya telefonê digel Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û gotina wî ya "Amerîka ligel Kurdistanê ye", pêşwazîkirina Barzanî ya ji aliyê rayedarên amerîkî ve di Firokexaneya Bexdayê nîşan dide ku rola giring ya Amerîkayê di vê serdanê de heye û ji bo têkiliyên Hewlêr û Bexdayê asayî bibin Washingtonê navbeynkarî kiriye.

Siyaseta kurd li Bexdayê yekdeng bû

Li aliyê din nûnerên partiyên siyasî yên RHK'ê yên ku di nava şandeya Serokê RHK'ê Barzanî de cih girtin, piştî demeke dirêj bi munasebeta vê serdanê hatin cem hev. Pispor amaje dikin ku partiyên siyasî dê demek nêz de bên ba hev û dê şandeyekê avabikin û ev şande dê digel Bexdayê mijarên girîng yên wek serxwebûnê binirxîne. Şandeya ku Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî pêşengî lê dikir; Serokê Yekitiya Olî ya Kurdistanê (Yekgirtû) Silhedîn Behaeddîn, Cihgirê Sekreterê Giştî yê Yekitiya Niştimanî ya Kurdistanê (YNK) Kosret Resul, Endamê Polîtburûya YNK'ê Mela Bextiyar, Sekreterê Civata Partiya Demokratîk ya Kurdistanê (PDK) Fazil Mîranî, Endamê Polîtburoya PDK'ê Roj Nûrî Şawês, Sekreterê Giştî yê Partiya Demokratîk ya Sosyalîst ya Kurdistanê (PDSK) Mihemed Hecî Mehmed û Fermandarê 70'emîn Lîwaya Pêşmergeyan Cafer Şêx Mistefa beşdarî tê de kirin.

Cihgirê Sekretere Giştî yê YNK'ê Kosret Resul Elî yê ku di nava şandeya digel Barzanî de serdana Bexdayê kir û diyar kir ku şandeya RHK'ê ji bo referandûma serxwebûnê biaxive çûye Bexdayê. Kosret Elî beriya hevdîtinê di daxuyaniyeke nivîskî de amaje kiribû ku Şandeya RHK'ê dê li gel Bexdayê mijarên serxwebûnê, ji holê rakirina kêşeyên di navbera Hewlêr û Bexdayê, budce û hêviyên gelê Kurdistanê yên siyasî bên axaftin û niqaşkirin.

### Barzanî: Em ê Mûsilê rizgar bikin

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî yê ku ji aliyê Serokwezîrê Îraqê Heyder Ebadî ve bi protoqoleke asta bilind de hate pêşwazîkirin serdana Serokweziriyê kir. Siyasetmedarên kurd yên ku di şandeya RHK'ê de cihgirtine agahî dan BasNûçe'yê; û gotin di civîna ligel Ebadî de Operasyona Mûsilê, referandûma serxwebûne ya ku niha amadekariyên wê li RHK'ê berdewam dike û têkiliyên Hewlêr û Bexdayê hatine axaftin. Piştî civînê Barzanî û Ebadî daxuyaniyeke hevbaş dan çapemeniyê. Di daxuyaniyê de pêşî Serokwezirê Îraqê Heyder Ebadî axivî û ragihand ku ew piştgiriyê didin RHK'ê û ji bo çareserkirina kêşeyên heyî dê xebatên hevbeş bên kirin û dê hevkariya wan berdewam bike. Ebadî behsa Operasyona Mûsilê, mûçeyên karmendan ya ku di navbera Hewlêr û Bexdayê de bibû sedema qeyranê û pertolê kir. Ebadî diyar kir ku di van mijaran de li gel RHK'ê lihevkirin e.

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî jî diyar kir ku ew jî piştgiriyê didin Ebadî û rawe kir ku di hevdîtinê de ji bo her du aliyan jî li ser mijarên gelek girîng hevdîtin pêk anîne. Barzanî di axaftina xwe de diyar kir ku dê mizgîniya azadiyê bidin gelê Mûsilê. Barzanî eşkere kir ku Pêşmerge û Artêşa Îraqê hevkariyek çêkirine û dê Mûsilê ji destê DAİŞ'ê de derbixin: "Em hemû kêşeyên xwe encax dikarin bi giftûgoyan çareser bikin. Nêzîkbûneke stratejîk ya Kurdistanê digel Bexdayê heye. Em ê hemû heremên ku di bin kontrola DAİŞ'ê de ne xelas bikin û ez li vir bangî gelê Mûsilê dikim, em ê demeke nêz de bajarê we azad bikin."

### 'Serxwebûn mafê me yê rewa ye'

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ku pêwendiyên xwe yên dîplomatîk li Bexdayê didomîne digel Serokê Koalîsyona Netewî yê şiîyan Amer El Hekîm bi hev re daxuyaniyeke çapemeniyê lidarxistin. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî amaje pê kir ku navbeyna Hewlêr û Bexdayê de kêşeya baweriyê heye lê belê ji bo ev kêşeyê çareser bikin û têkiliyên xwe sererast bikin di nava hewldanan de ne û wiha got: "Lêbelê ji bo çareserkirina hemû kêşeyên di navbera Hewlêr û Bexdayê de li gorî demên borî rewşeke nû û baştir heye. Têkiliyên navbera me de yên dîrokî temînata me ye. Ez bawer dikim ku em ê encamekî bi dest bixin." Serokê RHK'ê Barzanî ragihand ku li gel hikûmeta navendî ya Bexdayê li hev hatine ku kêşeyan çareser bikin û û wiha domand: "Em serxwebûnê daxwaz dikin û ev yek jî mafê me yê xweristî ye. Em ê vê mijarê digel Bexdayê binirxînin. Ev mijar divê bi têgihiştîneke beramberî hev bê çareserkirin. Hewce ye hemû mijar bi awayekî zalal bên axaftin."

Barzanî Operasyona Mûsilê jî nirxand û rawe kir ku Hewlêr û Bexda ji bo ku operasyon bi awayekî serkeftî bi dawî bibe li hev hatine û diyar kir ku Hewlêr û Bexda piştî DAIŞ'ê dê derbarê çarenûsa Mûsilê de jî di nava hevkariyê de bin. Ji bilî wan rûdanan di çarçoveya serdana Bexdayê Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî digel Serokkomarê Îraqê Fûad Masûm jî hevdîtinek pêk anî.



### Cihgirê Serokê PDK'ê: Rojeva Barzanî serxwebûn bû

Cihgîrê Serokê Koma PDK'ê yê Parlementoya Îraqê Dr. Tariq Gerdî derbarê serdana Barzanî de ji BasNûçe'yê re ragihand ku di rojeva serdana Barzanî de mijara sereke referandûma serxwebûnê bûye û Operasyona Mûsilê û qeyrana siyasi ya di navbeyna Hewlêr û Bexdayê de di çarçoveya pêwendiyên dîplomatîk de hatine axaftin. Gerdî diyar kir ku Barzanî dixwaze Kurdistan ji Îraqê ve bi awayekî dostane veqete û digel Îraqê cînartiyeke baş avabike. Gerdî got ku digel nûnerên partiyên siyasî yên kurd hewce ye hemû rayedarên Îraqê rêzdariyê bigrin ji bo mafê biryara gelê Kurdistanê tayînkirina paşeroja xwe. Gerdî amaje pê kir ku piştî Operasyona Misûlê rûdanên nû li benda gelê kurd in.

Ji aliyê din ew civînên ku fermandarên Pêşmergeyan di enîya şer de lidardixin û sewqiyatên çek û cebilxaneyên ji bo aliyê bakur, rojhilat û rojavayê bajarê Mûsilê têne kirin wek sinyalên Operasyona Mûsilê tên nirxandin. Li gorî agahiyên ku rayedarên Wezareta Pêşmergeyên RHK'ê dane BasNûçê'yê dê Pêşmerge herêmeke ewle ya ku bajarokên Şengal, Mexmur, Beşîka, Şêxan, Elequş, Zumar, Rabîa û Hemedaniyê yên ku girêdayê Mûsilê dike nava xwe de ava bike. Pêşmergeyên ku berê Şengal, Mexmur, Zumar û Rabîa ji DAIŞ'ê stendibûn, bi operasyonên dawî bajarokên Beşîka û Hemediyanê dorpêç kiribûn. Rayedarên RHK'ê ragihandin li herêmên bin qontrola Pêşmerge de kampên penaberan hatine avakirin û ji bo piştî Operasyona Mûsilê kêşeya penaberan rûnede hemû bergiriyên xwe kirine.

### Memuzînî: Dê heremên kurdan ê Mûsilê vegerin ser Kurdistanê

Nûnerê PDK'ê yê Mûsilê Saîd Memuzînî jî Operasyona Mûsilê ji BasNûçe'yê re nirxand û ragihand ku Wezareta Pêşmerge û Artêşa Îraqê ji bo operasyonê li hev hatine û dê operasyon demeke nêz de destpê bike. Memuzînî got Bexdayê ji bo Operasyona Mûsilê tû teahûd nedaye Pêşmerge.



Ahmet Gerdi | Nizamettin Taş | Sait Çürükkaya | Sait Memüzini

Memuzînî ragihand ku bajarên bakurê Mûsilê cih digrin Şengal, Mexmur, Beşîka, Şêxan, Elequş, Zumar, Rabîa û Hemedaniyê bajarokên kurdan e û Pêşmerge wê wan deveran bi temamî ji destê DAIŞ'ê rizgar bike. Memuzînî eşkere kir cihên kurdnîşîn ku girêdayî Mûsilê ne, piştî operasyonê dê bi rêya referandumê vegerin ser RHK'ê û Bexda jî razî bûye. Bi boçûna Memûzînî Bexda helwesta xwe ya li hemberî Hewlêrê diguherîne û ji bo asayîbûna têkiliyan rayedarên Bexdayê peyamên çereserkirina kêşeyan daye Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî.

Menuzînî derbarê hejmara sivîl û endamên DAIŞ'ê yên ku niha din ava Mûsilê de dijîn jî agahî dan û wiha axivî: "Di navenda bajarê Mûsilê de milyonek û 300 hezar sivîl û li ser 10 hezaran zêdetir endamên DAIŞ'ê dijîn." Bi boçûna Memuzînî dema operasyonê de dê sivîl berê xwe bidin bajarên kurdan û ji ber vê yekê RHK'ê ji bo penaberên ku dê Mûsilê bên kamp avakirin e. Memuzînî derbarê hêzên ku dê beşdarî operasyonê bibûn jî agahî dan û got dê Pêşmerge û Artêşa Îraqê beşdarî operasyonê bibin, Milîsên Heşdî Şabî jî dê gel Artêşa Îraqê beşdarî operasyona herêma Şergatê ya ku başûrê Mûsilê cih digre bibe û beşdarî operasyona navenda bajêr tê kirin nabin.

### Çürükkaya: Pêwîst e hêzên navneteweyî alikariyê bişînin

Fermandarê Yekitiya Pêşmergeyên Agiriyê Sait Çürükkaya jî derbarê Operasyona Mûsilê de agahiyên girîng dane BasNûçe'yê û ragihand ku warê operasyonê yên leşkerî, siyasî û mirovahî hene û bawer dike ku dê operasyon dijwar û dirêj be. Çürükkaya da zanîn ku piştî Operasyona Mûsûlê dê li ser 800 - 900 hezar sivîl xwe bispêrin xaka RHK'ê û ev yek jî kêşeyên ewlehiyê bi xwe re tîne.

Fermandar Çürükkaya bal kişand ser penaber û kampan û got: "Heger penaber di bajaran de bên bicihkirin, dê sedema kêşeyên ewlehiyê bibin. Ez difikirim pereyên ku Koalîsyona Navnetewî ya Netewên Yekbûyî ji bo penaberan daye Kurdistanê, tenê du meh têr dike. Operasyon herî kêm wê 2 sal berdewam bike. Divê koçberî baş bê organîzekirin."

Çürükkaya operasyonê ji aliyê leşkeriyê de jî nirxand û diyar kir ku DAIŞ'ê piştê windakirina xaka destê xwe, dest bi damezrandina stratejîyên parastine kiriye û di nav bajaran de tunelan çêkiriye û mayîn raxistiye. Ji ber vê operasyon zû xelas nabe. Fermandarê Pêşmerge bal kişand ser sedemeke din û diyar kir ku sivîlên di nav bajaran de jî dibin sedema dirêjbûna şer. Divê Artêşa Îraqê û Pêşmerge jî beşdarê operasyonê bibin. Çürükkaya derbarê îddîayê beşdarbûna mîlîsên Heşdî Şabî de axivî û da zanîn ku bi beşdarbûna Haşdî Şabî operasyon pêş nakeve, dê xerabtir bibe û nakokiyên mezhebî dê kûrttir bibin.

### Sekreterê PWDK'ê Taş: DAIŞ nikare li hemberê Pêşmerge bisekine

Sekreterê Giştî yê Partiya Welatparezên Demokratên Kurdistanê (PWDK) Nizamettin Taş Operasyona Misûlê ji BasNûçe'yê re nirxand û eşkere kir ku hêzên DAIŞ'ê piştê êrişên Pêşmerge û bombardimanên Hevpeymana Navnetewî lewaz bûne û dest bi parastinê kirine. Li gor Taş, DAIŞ nikare bi staratejiya xwe parastine biserbikeve. DAIŞ nikare li hemberî çek û firokeyên teknolojiya pêşketine bisekine. Rêxistin bi 'hêza baweriya' jî nikare li hemberî Pêşmerge bisekine û serkeftinekê bi dest bixe. Taş derbarê rewşa dawîn ya DAIŞ'ê de diyar kir ku ew rêxistinê di sala dawîn de gelek endamên xwe yên leşkerî û xak winda kiriye. Li aliyê din Taş bal kişand ser têkoşina Pêşmerge û YPG'ê ya li dijî DAIŞ û wisa pê de çû: "YPG û Pêşmerge zerarên mezin dan DAIŞ'ê û wan lewaz kirin. DAIŞ êdî nikare gelek deveran biparêze. Ji ber ku ji bo stratejiya parastinê hêza DAIŞ'ê nemaye û ew êdî nikarin xwe biparêzin û proseya tasfiyeyê destpêbûye."

Taş derbarê herêmên kurd ên wek Hemdaniyê, Başika û Elekuş ku nêzikê Misûlê da jî da zanîn ku Pêşmerge wê di nava 2 rojan de wan deveran ji destê DAIŞ'ê rizgar bikin. Taş got hinek sengerên Pêşmerge 10-15 km dûrî Misûlê ne.





### Mesrûr Barzanî: Guman ji bidawîbûna DAIŞ'ê de nakim

Mûsteşarê Ajansa Ewlehiya Kurdistanê Mesrûr Barzanî derbarê rizgarkirina Misûlê ji destê DAIŞ'ê ji civînên xwe yên bi fermandarên Pêşmerge û nûnerên welatên Hevpemana Navnetewî didomîne. Barzanî cara dawîn bi Balyozê Birîtanya yê li Tirkiyê Richard Moore hevdîtin pêk anî. Barzanî di hevdîtinê de diyar kir ku di dawiya dawîn de Îraq wê ji destê DAIŞ'ê bê rizgarkirin û derbarê paqijkirina wan de qet şîk û guman nake. Li gor Mesrûr Barzanî tiştê herî girîng ew e ku divê di nav xelkên Îraqê de ji hev bawerî xurttir bibe. Barzanî li ser rûdanên siyasî û leşkerî yên Rojhilata Navîn û Îraqê jî rawestiya û da zanîn pêngavên ku ji bo tunekirin û têkçûna DAIŞ'ê tên avêtin gelekî girîng in.

Barzanî di hevdîtina li gel balyozê îngîlîz de li ser rizgarkirina Misûlê jî rawestiya û bal kişand ser giringîya pêngavan. Barzanî derbarê prosesa piştê rizgarkirina bajêr de jî diyar kir ku piştê rizgarkirina Misûlê ji destê DAIŞ'ê hewce ye di nav mîletan de peymaneke siyasî bê çêkirin.

BasNûçe 03 - 09 Cotmeh 2016

## Serdana HDP'yê ya Hewlêrê

# Derfeteke din bo aştiyê

Yeter Polat
Salih Batırhan / Ahmet Özyeter



Dengvedana serdana desteya HDP'ê ya Hewlêrê didome. HDP'ê bi serokatiya Hevserokê Giştî yê HDP'ê serdana Hewlêrê kiribû. Herwiha şanda HDP'ê ya bi Serokê RHK Mesûd Barzanî û nûnerên partiyên siyasî re civiya bû, peyama yekîtiyê dabû û ji bo destpêkirina proseya çareseriyê alîkarî xwestibû. Serokê RHK'ê jî piştî hevdîtina ligel desteyê tekez kiribû ku ji bo destpêkirina proseya çareseriyê ew amade ye alîkariyê bike. Ligel Barzanî, nûnerên hemû partiyên siyasî yên ku Demirtaş bi wan re civiya bû tekez kiribûn ku destpêkirina proseya çareseriyê divê destpêbike û ew amade ne alîkariyê bikin ji bo proseyeke nû.

Piştî aliyan daxuyandibûn ku civînên wan di atmosfereke pozîtîv de derbas bûne, Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan jî dabû zanîn ku ew ê desteyek bişîne Hewlêrê û ew ê desteya wan jî hin hevdîtinan pêk bînin. Çavdêr û şîrovekarên siyasî yên meseleyê ji nêz ve dişopînîn amaje li ser wê yekê dikin ku serdana HDP'ê li daxwaza Öcalan pêk hatiye û wî xwestiye rêya diyalogê bê vekirin û ev serdan jî destpêka hewldaneke nû ye.

Di dema serdana Barzanî ya meheke berê ji bo Tirkiyeyê, berpirsên PKK'ê ragihandibûn ku ew ji bo agirbestê amade ne. Herwiha tê gotin ku PKK'ê ji Barzanî xwestiye ku derbarê rewşa Öcalan de zanyariyan bistîne û Barzanî jî ev yek ji rayedarên Tirkiyê re aniye ziman li ser vê yekê rayedarên tirk rê dane ku birayê wî di cejnê de serdana wî bike. Li ser hevdîtina ligel Öcalan û hêviyên wî yên ji bo aştiyê greva birçîbûnê ya HDP'ê li Amedê dabû destpêkirin jî bi dawî bûbû.

Di serdana xwe ya Enqerê de Barzanî jî li ser vegera maseya çareseriyê raya xwe anîbû ziman û banga aştiyê li aliyan kiribû. Herwiha Barzanî dabû zanîn ku wê li herêmê rûdanên giring pêk werin.

Piştî van geşedanan serdana HDP'ê ya ji bo Hewlêrê weke nîşaneyên hewldana proseya çareseriyê hat dîtin. Herwiha hêvî bi xelkê jî re zêde bûn ku dê alî vegerin ser maseya çareseriyê.

Hatibû îddîakirin ku Abdullah Öcalan ku li Girava İmraliyê birayê xwe dîtibû bi rêya HDP'ê nameyek ji Barzanî re şandiye û bo veguhestina peyama Öcalan HDP'ê serdana Barzanî kiriye û rojeva serekî ya aliyan proseya çareseriyê bûye.

Nûnerên HDP'ê yê şanda Hewlêrê îddîayên ku nameya Öcalan ji Barzanî re birine red dikin. Herçend ew red bikin jî çavdêrên siyasî yên meseleyê ji nêz ve dişopînîn amaje li ser wê yekê dikin ku serdana HDP'ê li ser daxwaza Öcalan pêk hatiye û wî xwestiye riya diyalogê bê vekirin.

Nûnerên RHK'ê yên ji BasNûçe'yê re axivîn jî amaje li ser wê yekê dikin ku armanca serekî ya şanda HDP'ê destpêkirina proseya çareseriyê bûye. Herwiha serdanên HDP'ê yên ji bo partiyên din jî weke perdeyeke li ser nehêniya proseyeke nû tê rawekirin.

Li aliyê din amaje li ser wê yekê jî hene ku Hevserokê Giştî yê HDP'ê Selahattin Demirtaş li Silêmaniyê bi berpirsên PKK'ê jî re civiyaye û ji bo anîna peyama PKK'ê dîsa vegeriyaye Hewlêrê û bi Serokê RHK'ê Barzanî re civiya ye.

Danûnstendina awarte ya di navbera kurdan de ji bo avakirina yekîtiya navmala kurdî hêvî bi kurdên 4 parçeyên Kurdistanê re çêkir. Herçend derbarê serdanê de gelek şîrove û îddîa bên kirin jî rayagiştî ya kurd ji vê danûstendinê kêfxweş e.

Hinek pisporên ku danûstendinan dinirxînin amaje li ser wê yekê dikin ku HDP di warê siyasî de tengav bûye û di demên wisa de seredanên bi vî rengî pêwîst in. Hinek pispor jî destnîşaniyê bi rola Barzanî ya navdewletî û dîplomasiya wî ya serkeftî dikin û didin zanîn ku ew ê giraniya Barzanî li ser proseyê hebe. Pispor, siyasetmedar, nivîskar û akademîsyenan serdana HDP'ê ya din ava rayagiştî de hêj tê nîqaşkirin ji BasNûçe'yê re şîrove kirin.

### Akademîsyen Nihat Ali Özcan: HDP li deriyekî digere

Çend xal di vê serdanê de hene. Yek ji van ew e ku qada siyaseta HDP'ê teng bûye, li aliyekê operesyon li dijî PKK tên kirin, mesela Sûriyê heye, rewşa awarte ya Hikûmetê heye, hem HDP hem PKK bi tundî tên rexnekirin. HDP li rêyekê digere ku ji vê proseyê xisareke kêm ve derbikeve. Geşedanên Sûriye û Tirkiyê û serdana Barzanî bo Tirkiyê, HDP tengav kir ku serdana herêmê bike. HDP'ê bi vê serdanê ve hem geşedanên dawîn nirxandin, hem di vê mijarê de gotûbêj kirin û dema birayê Öcalan serdana wî kir hin peyam ji layê wî ve hatibûn dayîn, dibe ku HDP'ê ev peyam biribin Başûr û li Qendîlê hevdîtin kiribin. Barzanî tiştekî wisa hez dike û erênî dibîne. Ji bo vegera ser proseya aştiyê, dibe ku destpêka hevdîtinan be. Piştî meseleya Sûriyê hate vê qonaxê, helwesta PKK'ê îcar tevlîhev bû. PKK li Sûriyê bêhtir bi bandor e, lê ev rewş naçe xweşiya Barzanî. Dibe ku PKK hêza Barzanî biçûk bibîne û li ber wî rabe, bi vî halî rewş hêj bêhtir dê aloz bibe. Erdoğan ji bo rewşê bizanibe dê desteyekê bişîne. Nabe sûrprîz ku Erdoğan desteyekê ji bo îmkana proseya çareseriyê bişîne.

### Siyasetmedar Sait Aydoğmuş: Tiştên bêwate ji bo vê serdanê tên gotin

Piştî vê serdanê, aliyan gelek behsê yekîtiya netewî ya kurdan, hevkariya kurdan a navxweyî kirin. Bi teybet destnîşan kirin ku dive li Bakurê Kurdistanê tundî bisekine û xwestin kêşe bi aştiyê bên çareserkirin. Vê gavê hemû hêzên nêzî PKK'ê kampanyayeke wisa dimeşînin û li vê rewşê birayê Öcalan serdana wi kir û piştre HDP'ê serdana Başûr kir. Li ser van geşedanan serdana HDP'ê, weke 'HDP ji bo navbeynkarî û alîkariya proseya aştiyê serdana Barzanî kir' hat nirxandin û hîn jî wiha tê nirxandin.

Erdoğan ragihandibû ku dê şandekê bişînin Başûr, vê yeke nirxandinên li ser proseya aştiyê zêde kirin. Ev geşedanên li ser hev hebûna projeyekî aştiyê a bê talih nîşanî me dide, ku ev jî bi rêya Öcalan ve bi rê ve diçe.

Lê weke tê şîrovekirin an zanîn, ti pêwendiya vê projeyê bi 'yekîtiya kurdan' an 'proseya çareseriyê' tune. Sîstema desthilat a tirk bi teybet rejima Erdoğan, li Bakur dixwaze di şexsê PKK'ê de, bi komkujî û tundiyê ve xelkê kurd têk bibe û vê yeke ji bo entegrasyona kurdan bi kar bîne, jixwe ev sala dawîn plana Tirkiyê hêj bêhtir zelal bû û hat dîtin. Tirkiye li ser Öcalan û Barzanî hewldide proseyeke nû bide destpêkirin. Piştî têkçûna 'Şerê Xendekan' di navbera Qendîl, HDP û İmralıyê de dîzayneke nû tê çêkirin, rola Öcalan tê diyarkirin, di eslê xwe de sîstema desthilat a tirk li herêmê li dijî kurdan polîtakayên xwe bi rê ve dibe û alî hewl didin van nakokiyan ji holê rakin.

### Siyasetmedar Ümit Fırat: Heke dewletê nexwestiba HDP nediçû

Barzanî pêşîn dixwaze li herêmê bedengî peyda bibe. Di eslê xwe de li rewşa nû ya Rojhilata Navîn, Barzanî bi hin hevalbendiya ve cihê xwe garantî dike. Li gorî dewletên din dê Tirkiyê re pêwendiyên xwe bêhtir bihêz bike. Li gorî ve yeke bi Tirkiyê re pêwendiyên xwe geş dike. Çareserkirina mesela kurd li Tirkiyê, daxwaza hemû kurdên cîhanê ya sereke ye. Ez bawer nakim ku Barzanî hewldaye ku di vê mijarê de PKK'ê nerm bike û li ser PKK – Tirkiyê – PYD'ê pêngaveke nû bide destpêkirin. Barzanî pêşîn ji bo pozîsyona xwe pêwendiyan deyne, ji xwe vê gavê pêwendiyên PDK û PYD'ê jî xirab in. YNK, Goran û PKK ji bo ku rêveberiya Barzanî bixin, ketin nava tifaq û pozîsyonan. Divê li vê derê em yekîtiya kurdan bêhtir hin tiştên din jî bifikirin. Ez naxwazim gotineke weke 'yekîtiya kurdan' bînim ziman. Ez difikirim ku divê tehammûlê yekîtiya kurdan bikin û kurd hewceyî jiyaneke hevpar in. Nexwe kurd di nava sînorên hin dewletên din de hatine dabeşkirin, û gelek normal e ku kurdan fikr û ramanan sîyasî ên cihê cihê hebin. Behsê çareseriyên cuda heye. Em ji mêj ve bi avayekî îdealîst yekîtiya kurdan dibihîzin, lê yekîtiyê bêhtir divê pêşîn kultura pêkve jiyanê bicih bibe. Ez bawer im ev yek rast e.

Li aliyê din piştî vê hewldana HDP'ê, bi rastî piştî HDP'ê piyê xwe avêtî nav erdê Kurdistanê, ez fikirîm ku axaftina di navbera Öcalan û birayê wî tenê bi çend hevokan neqediya ye. Yanî bila me nexapînin. Bi temamî rojê Öcalan tenê gotiye birayê xwe bila 'ji dewletên du kes bên em dê di nava 6 mehan de vê meselê çareser bikin?' Tenê ew qisim ji me re hat gotin. Ya ji me re nehatî gotin jî proje û însîyatîfgirtina Öcalan a nû ye. HDP, ji ber helwesta xwe ya li dijî Barzanî ya vê zivistanê divê lêborînê ji Barzanî bixwaze. Lê dema diçûn Başûr di nava bernameya wan de hevdîtina bi Barzanî re nebû.

Zivistana borî beriya şerê xendekan gur nebû, Barzanî hat û bêdengî û sikunet pêşniyar kir û destnîşan kir ku ger pêwîst be. Ew jî dê bibe navbeynkar. Lê Hevseroka HDP'ê ew biçûk xist û digot 'ev mesela me ya navxweyî ye û xwe têkil neke.' Di vê çaxa înternetê de vê yeke di medyaya kurdî de cih girt. Ji xwe Barzanî ji aliyê Yüksekdağê ve hat pêşwazîkirin, ne Demirtaş, ev yeke jî bê hurmetiya HDP'ê ya li dijî Barzanî nîşanî me dide.

BasNûçe 03 - 09 Cotmeh 2016



Nermbûnek heye. Li gorî min ev hewla nermbûnê ji bo bihêztirkirina rola Barzanî ya herêmê nîne, cereke din ji bo xwe, yanî ji bo bihêztirkirina PKK'ê tê kirin. Jixwe Barzanî li herêmê û bi Tirkiyê re pêwendiyên bihêz hene, ji ber wê HDP nikare tiştekê bide Barzanî an hêza wî zêde bike. Barzanî bi xwe vê yeke dike.

HDP dixwaze van serdanên xwe girîng nîşan bide ku Öcalan ji bo çareseriyê dixebite. Ev serdanên HDP'ê bi temamî ji bo ku Öcalan roleke nû bi PKK'ê re bigire tên kirin. Helbet dewletê hay ji vê yeke heye. Jixwe eger dewletê ev hewlê nezanîba yan ne pejirandiba ev hevdîtin nedibûn. Beriya wê civînê dewlêtê dizanî ku dê çi bê axaftin. Eger tiştekî cuda bihata axaftin dewletê destûr nedida.

### Nivîskar İlhami Işık: Hemû cîhan Barzanî weke garantî qebûl dike

Em dikarin bibêjin ku li herêmê du aliyan heman kêşe heye û nêrînên van aliyan van rojan li hev digirin. Li Tirkiyê 15'ê Tîrmehê derbeyek çêbû û armanca wan ya pêşîn jî Erdoğan bû. Li heman demê li Başûrê Kurdistanê jî bi avayekî xurt proseya derbeyê didome. Îran bi hemû aliyan ve di nava vê derbeyê de ye û Silêmanî ber bi ciheke din ve tê kêşan û êrîşen mezin li dijî serxwebûna Kurdistanê heye û PKK û Goran di nava vê derbeyê de ne. Beriya roja Tirkiye daket Sûriyê, Barzanî hat Tirkiyê, diyar e fikrên wan weke hev in û vê yeke jî pêwendiyên wan zêde kirin. Piştî wê li İmralıyê hevdîtin pêk hatin. Herçiqas HDP bêje 'em ji bo yekitiya wan partiyan çûne wir' jî, piştî hevdîtinên wan gelek hevdîtinên cuda çêbûn.

Daxwaza Öcalan jî ev bû. Qendîlê ev qebûl nekir. Piştî Qendîlê qebûl nekir pêwendî têk çûn û nîvco man. Jixwe Barzanî ev yekê qebûl kiribû. Dema Barzanî li Tirkiyê jî destnîşan kir ku ji ber van serpêhatiyên xirab prose li vê demê zor e. Qendîl çawa 7'ê Hezîranê gelek bawerî bi xwe anî, dixwaze li wê derê jî heman tiştî bike.

Ez xerîb nabînim ku Qendîlê bi serpereştiya Barzanî proseyeke nû qebûl nekiriye. Lewma hertim wan wisa kir. Kengê li welat tiştek bi dest ketibe dema PKK'ê derfet didît ev destkeftî têk birin. Berê heta niha ev yeke wisa ne. Piştî koalisyona navdar a HEP û SHP û 93 - 96'an heman tişt hate serê me. 2003 – 2004'ê jî wisa çêbû. Niha 7'ê Hezîranê jî heman tişt bû. Bo rêvebirina vî welatî bûne namzet. Li gel van hemû tiştan PKK'ê hemû kurdên li Tirkiyê feda kirin. Ev helwesta Qendîlê ji bo min sûrprîz nebû. Hemû destkeftiyên li Rojava û Tirkiyê pûç kirin. Vê gavê li Başûrê Kurdistanê ketine nav fêl û findan, bi destkeftiyên li Silêmanî, Bexda, û milîsên Haşdî Şabî ve dixwazin destkeftiyên Başûrê Kurdistanê têk bibin, qedr û qîmetê wê binpê bikin. Mixabin wiha ye.

Proseyeke nû bêqanûn û aktorên derqanûnî ve nayê meşandin. Ev yeke tekez û zelal e. Bêlê, proseyeke nû dê çêbibe. Ne li Tirkiyê, ne li herêmê ev rewş êdî bi rê ve naçe. Riya hemûyan li hev ket. Dema wisa be proseyeke nû destpê dike. Lê aktorên kevin ve nabe. Ez wisa difikirim. Hevdîtinên navdewletî dê diyarker bin, wisa xuya ye. Lewma hin rêxistinan vîna xwe teslîm dewletan kiriye. Dema wisa be aktorên sereke dibin dewlet. Duh bi vî rengî nebû. Lê mixabin îro rewşa PKK û Qendîlê tiştek wisa derdixist holê.

Hemû cîhan hebûna Barzanî ji bo çareserkirineke aştiyane weke garantî dibîne. Ji bo Tirkiyê jî ev wisa ye, di vê mijarê de ti gumanên Tirkiyê ji bo birêz Barzanî nîn in. Li vê demê divê rewşa Sûriyê zelal bibe, heyamên pêşiya me em ê gelek tiştan bibihîzin. Dê gelek hevdîtinan bibînin.

### Parlemêntera HDP Besima Konca: Daxwazeke taybet ji bo proseya çareseriyê nehat kirin

Ji bo yekîtiya kurdan ev serdaneke girîng bû. Serdana me nû nîne. Îro prose gelek xeternak e, lewma gelek hat niqaşkirin. Lê ji bo me tiştekî nû nîne. Bi taybet ji bo vebûna Parlementoya Başûr û partiyên Başûr zûtir yekîtiyekê pêk bînin me ev serdan kir. Spekûlasyonên li ser serdana me şîroveyên bi zorê ne. Ti rewşeke wisa nîne. Ev serdan tenê serdana Başûr ve nayê sînordarkirin. Di serdanê de kêşeyên li seranserê Kurdistanê û yekîtiya netewî hat nirxandin.

Demirtaş ti daxwaz ji Barzanî nekir ji bo navbeynkariya proseya çareseriyê, û jixwe ev mesele dê li Tirkiyê bê çareserkirin. Beriya niha ji bo çareseriyê desteyeke dewletê hebû. HDP'ê desteya Îmraliyê hebû. Ji bilî vê serdanê xebatên dîplomatîk me hene li ser Rojhilata Navîn. Lê destpêkirina bi Başûr ve û hevdîtina bi partiyên Başûr re encama baştirîn bû. Me, bi birêz Barzanî ve destpê kir, piştre li Silêmaniyê bi rayedarên Goran, YNK û partiyên îslamî re domand. Li wê dere nêzî 50 partiyan hene ku li Parlementoyê cih nagirin. Hevdîtinên birêz Demirtaş hebûn. Bernameyeke giştî bû. Gotinên li ser navbeynkariyê rast nînin ku em desteyeke berfireh ve çûbûn.

Herwiha di serdana me de me, li ser hevkarî û kîjan partî bibe bila biba, meşandina siyaseteke netewî li hev kir. Ji ber ku li ser kurdan jî konjoktoreke navnetewî heye û Rojhilata Navîn ji nû ve tê dîzaynkirin. Divê li vê proseyê, kurd berjenwendiyên xwe yên netewî asteke herî bilind bigirin û hem li qadên navnetewî hem jî li siyaseta navxweyî vê yeke esas bigirin, me li ser van xalan li hev kir. Ti daxwazeke taybet ji bo PKK an proseya çareseriyê me nekir.




### Parlamenterê HDP'ê Celal Doğan: Bo Kongreya Netewî wext hewce ye

Ji şandeya me ti kesî bi Abdullah Öcanlan re rûbirû hevdîtin nekiriye. Birayê Öcalan bi wî re hevidîtin pêk anî û wî jî ti peyam neda me. Me ji kesî re peyam yan jî name nebiriye. Birêz Barzanî gelekî bi tecrûbe ye. Bi wî re tecrûbeyên bi salan hene. Ew dizane rûdanên çawa li Rojhilata Navîn pêk tê û hemûyan ferq dike. Serokê siyasî ye ku dizane Rojhilata Navîn dê çi rû bide. Şerxwaz nînin; ji şerî dûr disekinin. Em jî bû nêzî du salan e li Parlementoyê ne û ji bijî aştiyê daxwazeke me nebûye. Di nava serdan û Prosesa Çareseriyê de ti têkîlî tune ye. Ev seredan hatibû plankirin. Tiştên ku tên gotin, derew in.

Em ê dev ji rastiya xwe bernedin. Rêya ku em rast dizanin aştî ye, jiyaneke hevpar e. Em dixwazin di nava sînorê welatê xwe de aram bijin û aş bibin. Ji bilî vê ti daxwaze me tune ye, divê nebe jî. Ji bo vê kê alîkariya me bike em ê bo wan minnettar bin.

Peyva herî xweşik a Barzanî ew bû: 'Serkeftinên ku bi aştiyê re hatine bi dest xistin, bi şera 100 salê nayê bidestxistin.' Peyvekê din ya girîng ya Barzanî hebû: 'Ez çi qas pêşketim, bi aştiyê pêş ketim.' Kesên ku şer nedîtin, dikevin şer, Xwedê dawiyê bi xêr bike. Kongereya Netewî dê hinek wext bigre. Me hîn bingeha wê çênekiribe û li ser wê biaxivin, em ê berê pêkhatina wê dê wê bi dawî bikin. Ji ber vê divê haya me jî hemû tiştan hebe û hewce ye em hewl bidin.

### Rojnamevan Aza Hasip Karadaxi: Divê berê PKK dev ji şîddetê berde

HDP'ê du car bi Serokê RHK'ê Barzanî re hevdîtin pêk anî. Rojeva sereke ya hevdîtinan ji bo destpêkirina prosesa çareseriyê navbeynkariya Barzanî bû. Daxwaz kirin ku Serokê RHK'ê ji bo prosesa çreseriyê navbeykariyê bike. Bi partiyên siyasî yên din re jî gotûbêj kirin. Şandeya HDP'ê despêkirina prosesa çareseriyê bi wan re jî nîqaş kir. Öcalan, di sala 2013'an de ji Mesûd Barzanî û Neçirvan Barzanî re peyam şandibû. Ez bawer dikim niha jî heman peyam şandiye û daxwaza navbeykariya wan kiriye. Hem Neçîrvan Barzanî û hem jî Serok Barzanî ji bo prosesa çareseriyê gelekî alîkarî kirin. Ji ber kiryarên PKK'ê proseya çareserî bi dawî bû û bi vî awayî diyalog û yekîtiya ku di nav kurdan de hene, xelas kir. Aktorên berê yên prosesa çareseriyê dîsa li ser kar in. Tê hêvî kirin ku ji bo çareserî û pêkhatina aşitiyê Barzanî rolekê aktîv bilîze. Hemû kes ji Barzanî kêfxweş in.

Herwiha hemû layen dixwazin PKK dev ji çek û şer berde. Ez dikarim bibêjim ku PKK alîkariya pêşketina demokrasiya Tirkiyê nekir û heta zerar da. Ne tenê li Tirkiyê, PKK bi helwest û kiryarên xwe alîkariya çareseriya kêşeyên herêmê jî nake û heta kûrtir dike. PKK di nav projeya Îranê de cih digre. Zerar dide demokrasiya Tirkiyê û Bakura Kurdistanê. RHK'ê jî aciz dike. Rêveberiya PKK'ê ya Qendîlê divê dev ji şidetî berde. Hewce ye bi mentiq tevbigerin û dev ji polîtîkayên Îranê yên herêmê berdin.

### Şewirmendê Serokwezîrê RHK'ê Mustafa Hasan: HDP'ê peyama bêlayaniyê ji Başûrê re şand

Derbarê birêz Abdullah Öcalan ji Serok Barzanî re peyam şandiye yan ne de ti zanyarî di destê min de tune ye. Heger Öcalan ji bo çareseriyê ti peyam şandibe jî hevalên vê astengî derxistine. Ew êdî wek nerîtî bûye. Ez bawer dikim ku hem Öcalan û hem jî Erdoğan alîgirên aştiyê ne. Tê şirovekirin ku Demirtaş peyama Öcalan ji Barzanî re anîye. Lê hewcetî bi peyameke wisa tune ye. Serok Barzanî naxwaze kurd bimirin, zerar bibînin û bajar hilweşin. Ji destê wî çi hatiye ji bo çareserî û aştiyê kiriye û ji niha û pê de jî çi hewce be, dê bike.

Wezîrê AKP'ê dê bên Hewlêrê û dê di serdanê de pêwendiyên Hewlêr û Enqerê, hevkariyên aborî û leşkerî bên axaftin. Çareserî û aştî jî mijarên sereke ne. Helbet axaftina wan mijarana gelekî asayî ye. Ji ber ku Serok Barzanî hertim peyama aştiyê dabû. Ji niha û pê de jî dê vê peyamê bide. HDP helwesteke siyasî ya xerab şopand. Rabûna parêzbendiya parlamenteran jî di xeteriyê dane; li ser 29 şaredariyê qayyum hatin tayînkirin. Tirkiyê jî di rewşeke ne baş de bû. Bi Rûsyayê pêwendî xerab bûn. Hewl didin ku bi Rûsyayê re pêwendiyên xwe rast bikin. Di vê proseyê de bi tenê Barzanî bi Tirkiyê re hevaltî kir. Di navbera Barzanî û Erdoğan de hevaltiyek heye. Demirtaş bo çareseriyê ji Barzanî xwest navbeynkariyê bike. Divê berê PKK û Tirkiyê lihev bên; hewce ye ji bo çareseriyê bi biryar tevbigerin; Heger ew wana bînin cih, Barzanî jî dê tiştekî bike, navbeykariyê bike. Pêwist e HDP'ê jî rê û rêbazên xwe yên siyasî amede bike. Divê êdî Qendîl ji bo wan rojevê diyar neke û vê kiryara xwe bi dawî bîne.

Birêz Demirtaş ji partiyên siyasî yên Başûr re û bi taybetî jî ji PDK'ê re peyam bîne hat Kurdistanê. Hem kurdên Rojavayê û hem jî kurdên Bakur li dijî qeyrana siyasî yên li Başûr bê alîgir tevnegeriyan. Bi YNK û Goran li dijî PDK'ê helwest nîşan dan. Bêlayan nebûn. Demirtaş jî hem ji YNK'ê û hem jî ji PDK'ê re peyam bêaliyê bide, hat Hewlêrê. Demirtaş gotibû: 'Em bêalîgir in. Helwesta me ya li hemberî PDK'ê jî YNK'ê jî wekhev e.' Hem kurdên Bakur û hem jî kurdên Başûr dizanin ku Öcalan di girtigehê de ye û Mam Celal jî nexweş e. Ji bo serokatiya kurdan bi tenê Mesûd Barzanî heye. Derbarê kurdan de bi Barzanî re pêwendî tên kirin. Kîjan partiyên Kurdistanê ji Barzanî dûr bikeve, ji hêzên navneteyî jî dûr dikevin. PYD, PKK û HDP di du salên dawî de li hemberî qeyranê siyasî yên Başûr bêalî nebûn. Li dijî PDK'ê sekînin. Yekîtî li Kurdistanê ye. Di demeke nêz de partiyên me yên siyasî dê kom bibin û rêyên çareseriyê dê peyda bikin.

# Li Rojava nîqaşên serjimêriyê

Derya Kılıç

Rêveberiya Xweser ya Rojavayê di çarçoweya amedekariya hilbijartin û federalîzmê de dest bi serjimêriyê kir û serjimêrî hîn jî didome. Ji aliyê din vê jî rêveberên ENKS'ê PYD'ê bi kirina karên xeter tohmetbar kirin û diyar kirin ku xelkên Rojava koç kirine û vê serjimêra şêniya kurdên herêmê dê kêm nîşan bide û federasyona ku PYD'ê pêk tîne, li gorî taybetmendiya kurdan nîn e. Ji ber vê ENKS gelekî nîgeran e.

Xebata serjimêrê ya li Rojavayê di 19'ê Îlonê de bi kampanyaya 'ez li vir im' destpê kir û heta 2'ê Cotmehê dê bidome. Tê gotin ku vê serjimêrî ya li Rojavayê ji Heseke heta Menbîcê dê pêk bê. Di vê xebatê de li ser wan krîteran tên rawestandin: "Hejmara hemwelatiyan; rewşa civak û malbatiyê; rêjeya xwendin û nûsînê; asta perwerdehiyê; hala azib û zewicandinê; hala kêmendamê; koçberiya derve û navwelatê. Dema ku serjimêrî xelas bû, ji bo hilbijartinê dê referandûm pêk bê. Piştê hilbijartina endamên meclîsê, federalîzm dê bê ragihandin. Li gorî zanyariyên ku ji çavkaniyên herêmê hatine bidestxistin, dîroka federalîzmê hîn jî nediyar e. Lêbelê Rêveberiya Xweser, partî û etnîkên li Rojava ji bo diyarkirina dîroka hilbijartin û federalîzmê civinek li dar xistin.

Encûmena Niştimanî ya Kurd li Sûriyê (ENKS) xebata serjimêra PYD'ê rexne kir û da zanîn ku serjimêr û hilbijartin karekî aqilane nîne û dê zerar bide xelkên kurd. Vê federalîzma ku tê ragihandin, divê mafên kurdan biparêze û hewce ye PYD xalên peymana Hewlêr û Duhokê qebûl bike. Rejîma Sûriyê jî nerazîbûna xwe ya li dijî amedekariya federalîzmê nîşan da.

Li aliyê din bertekên erebên heremê yên li dijî amadekariya federasyonê jî didomin. Li Heseke hejmarek ji alîgirên rêjîma Sûrî li pêşiya dadgehê kom bûn û nerazîbûna xwe ji bo Federaliya Rêveberiya Xweser ragihandin û diyar kirin ku federalîzmê naxwazin.



Li Rojavayê piştê 2'ê Cotmehê federalîzm dê bê ragihandin. Ji ber ku dê serjimêra Rojavayê xelas dibe û piştê vê jê dê hilbijartin bên çêkirin û federalîzm bê ragihandin. Ji aliyê din vê jî Rêveberiya Xweser a Rojavayê ji bo diyarkirina dîroka federalîzm û hilbijartinan civînek li dar xistin. ENKS jî diyar dike ku serjimêr û hilbijartin dê zerar bidin xelkê kurd û divê PYD dev ji vî karî berde.

### Civînên li Lazkiyê di navbera PYD û rejîmê de

Bi navbeykariya Rûsyayê, Rêveberiya Xweser û rejîm derbarê paşeroja Sûriyê hevdîtinan pêk tînin. Tê îddîa kirin ku PYD bi rik li ser federalîzma Rojavayê û ragihandina vê radiweste û rejîm jî diyar kir ku herêmeke kurd ya federal, dê Sûriyê parçe bike û ji ber vê jî fedralîzmê qebûl nekir. Rêveberiya Xweser û rejîm li bajarê Lazîkiyê dicivin.

Rayedarên Rojavayê derbarê wan hevdîtinan de ragihandin ku Rûsya daxwaz kiriye heta encamek erênî bê bidestxistin, divê rayedarên Rojava û rejîmê hevdîtinan bidomînin. Haya Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) jî ji wan hevdîtinan heye û ji ber navbeykariya Rûsyayê ti aciziya wê tune ye.

### Ragihandina federalîzmê

Wezîrê Derve yê Kobanê Îbrahîm Kurdo derbarê amadekariya federalîzm û dîroka wê de zanyariyan da BasNûçe'yê û got: "Di 15'ê Adarê de meclîsa fedaral hat damezrandin. Endamên kurdên Rojava û Bakurê, ereb, sûryanî û endamên hemû partiyan di vê meclîsê de cih digrin. Ev parlamento ji bo naskirina federalîzm û taybetiya wê û diyarkirina paşerojê hat damezrandin."

Îbrahîm Kurdo derbarê ragihandina federalîzmê de jî axivî û eşkere kir ku li ser biryara federalîzmê 6 meh derbas bû û di demeke nezîk de dê bê ragihandin. Kurdo di berdewama axatina xwe de derbarê federalîzmê de wisa got: "Wisa xuya dike ku dê di 10'ê Cotmehê de federalîzm bê ragihandin. Lêbelê niha dîroka ragihandina wê teqez nîne. Amedekariyên me dê dîroka wê diyar bike. Bi beşdarbûna hemû endamên partî û etnîkan civîneke dê bê lidarxistin û vê civîna, civineke berfireh dê bibe û cicîn dê 2 roj bidome. Ev berê ragihandina federalîzmê dê civîna dawî bibe. Di civînê de dîroka ragihandina federalîzmê dê diyar bibe."

Kurdo bal kişand ser hevdîtinên bi xelk û helwesta xelkê û axaftina xwe wisa domand: "Em hevdîtinên xwe yên bi xelkê re didomînin. Hemû kes federalîzmê dixwaze. Sûriyê 5-6 sal e di nav şer de ye. Ew alozî dê bibe sedema parçebûna Sûriyê. Divê hem dewletên herêmê û hem jî hezên navneteweyî ji bo kêşeyên Sûriyê, rêyeke çareseriyê peyda bikin. Kurdo destnîşaniya rewşa şerê Sûriyê kir û da zanîn ku şerê Sûriyê di navbera elewî–sunî û ereb-kurd de berdewam dike û şerê navxweyî yê Sûriyê di navebera xelk de hin jî didome. Sûriyê ji aliyê erdnîgariyê de parçe bûye û ji ber vê bi tenê xelkên kurd ên Rojava nikarin projeya federalîzmê pêk bînin. Kurdo di berdewamiya axaftina xwe de wisa got: "Kurd dixwazin xelkê Sûriyê wek biratî bi hev re bijîn û ev tenê bi pergala federalîzmê dê pêk bê. Bi tenê vê pergala dikare rê li ber parçebûna Sûriyê bigire û bi vê pergalê mirov dikarin bi hev re bijîn."

### 'Em bi rejîmê re nacivin'

Wezîrê Derve yê Kobanê îddîayên hevdîtinên navbera rêveberiya Rojava û rejîmê Sûriyê red kir û got ku ew ne bi rejimê re lê bi kesên nêzîkî rejimê re dicivin: "Bi siyasetmedarên berêyên rejîmê re hevdîtin tên kirin. Ti têkîliyên wan bi rejîmê re nema ye. Ew serbixwe ne. Ew dixwazin me nas bikin û em dixwazin fêrî fikr û ramanên wan bibin. Herwiha em di wan hevdîtinan da fêrî fikr û ramanên wan yên derbarê pergala federalîzm, paşeroja Sûriyê û Rojava de dibin." Kurdo derbarê kesên ku beşdarî wan hevdîtinan dibin jî agahiyan da û da zanîn ku nûnerên partiyên demokratîk, çep, kurd û liberal yên li Rojava wek şandeyekê çûn û bi wan civiyan û ev hevdîtin bi navbeynkariya Rûsyayê re pêk tên.

### 'Dibe ku Kongreya Netewî pêk bê'

Hevserokê Partiya Yekîtiya Demokratîk (PYD) Salih Muslim hêviyên xwe ji bo başkirina têkiliyan li gel Partiya Demokrata Kurdistanê (PDK) diyar kiribû. Îbrahîm Kurdo vê daxwaza Muslim jî nirxand û da zanîn ku Rayedarên Xweseriya Demokratîk ya Rojavayê hertim dixwaze têkiliyên xwe bi hemû parçeyên Kurdistanê xûrttir bikin û hertim dixwazin bi wan hevdîtin pêk bînin. Kurdo bal kişand ser hêz û girîngiya PDK'ê ye û got: "Em dizanin ku PDK li Başûrê Kurdistanê hêzeke girîng û hêja ye û bandora wê gelekî mezin e. Heger ew jî bixwazin, em ê derbarê kêşeyên kurdan de hevdîtinan pêk bînin û ji bo vê ti asteng yan jî kêşe tuneye." Kurdo axaftina xwe bi vê mijarê re bi dawî kir û wisa pê de çû: "Rêveberiya Rojava û PYD hertim alîgirên hevdîtinên bîratiyê ne û dibe ku di paşerojê de Kongreya Netewî pêk bê."

### Mihemed: ENKS ji bo kongreyê amedekariyan dike

Endamê PDK-S'ê Muslim Mihemed jî amedekariya 4'mîn Kongreya Awarte ya ENKS'ê û xebata serjimêriya PYD'ê ji BasNûçe'yê re nirxand û got: "Amedekariyen ji bo 4'mîn kongreya me berdewam dikin. Lê dîroka pêkanîna kongreya me hîn jî nediyar e. Lê di vê mehê de pêk bê. Encûmenê me niha amadekeriyê kongreyê dikin. Civîn û hilbijartin pêk tên. Ji hemû kom dikarin heta ji sedî 50'ê beşdarê kongreyê bibin û ji sedî 50'ê yê din jî ji endamên partiyê dê pêk bên. Heta mehekê kongre dê bê lidarxistin. Di kongreyê de rewş û kêşeyên kurd û Sûriyê dê bên axaftin. Rojeva me ya herî gîrîng peydakirina rê û û rêbazên çareseriya ev kêşe ne."

### 'Xebata serjimêriyê karekî aqilane nîne'

Mihemed derbarê xebata serjimêrî ya PYD'ê de jî axivî û diyar kir ku xebata serjimêrê karekî aqilane nîne, ji ber ku wê serjimêra hejmara rastî ya şêniya herêmê dê nişan nede û ji aliyê din vê ji ber şer koça gel berdewam dike. Mihammed bal kişand ser xetera serjimêriyê û got: "Em wek ENKS'ê xebata serjimêriyê pesend nakin. Ji ber ku di welatekî de ku di nava şerê de ye, karê serjimêrê nayê kirin û ev karekî bi akil û manitq nîne. Ji ber şer gelekî welatî koç kirine jî. Bi taybetî li Kurdistana Sûriyê gelek kurd koç kirine. Ji ber vê hejmara serjimêriiyê rast û dirust nîne. Herwiha ev wek awayek fermî dê bê dosyakirin. Ez bawer nakim ku ev karekî rast e."

### 'Divê federalîzm li gorî taybetiya kurdan be'

Mihemed bal kişand ser federalîzmê û wisa rave kir ku ENKS di civîna xwe ya yekem de li ser çareseriyeke federatîf rawestiyabû. Lê PYD hewldide ku di çarçoweya sînoran de pergaleke federaliyê saz bike. Pergala federaliya PYD'ê ne li gorî kurdan e. Mihemed derbarê vê mijarê de axaftina xwe wisa domand: "Me wek ENKS'ê di kongreya xwe yekem de jî bal kişandibû ser federalîzmê. Federalîzma me û a wan ji hev gelekî cuda ne. Federalîzma wan bi hev giredana 3 bajaran pêk tê. Di vê pergalê de derbarê kurdan de tiştekî tuneye. Kurd di vê partiyê de tên binpêkirin. Li gorî me; divê federalîzm li gorî kurdan bibe. Divê mafên kurdan zêdetir pêş bikevin. Mafên ereb û tirkan jî di vê pergalê de dê bên parastin. Li gorî me divê federalîzm li gorî taybetmendiya kurdan be."





# Serkeftina Reqayê wê herkesî razî bike?

Ahmet Özyeter

Piştî daxuyaniyên jêderên nêzî Hikûmetê, pozîsyona Tirkiyê li Reqayê ji bo raya giştî bû mereq. Piştî îdiayên ku weke 'Dewletên Yekbûyî ên Amerîka (DYA) dixwaze meha çiriya pêşîn operasyonên Mûsil û Reqayê hemdem bide destpêkirin', rayedarên Hikûmetê jî li dû hev daxuyanî dan û destnîşankirin ku eger Yekîneyên Parastina Gel (YPG) beşdarî Operasyona Reqayê bibe, Tirkiye beşdar nabe.

Çav li operasyonên Reqa û Mûsilê ye, lê ji van bêhtir rewş û pozîsyona Tirkiyê di van operasyonan de tê mereqkirin. Hin çavkaniyên nêzî Hêzên Artêşa Tirkiyê (TSK) destnîşan dikin ku di nava artêşê de, li ser beşdarbûna operasyona îtîraz zêde dibin û herwiha Artêş bi avayekî aşkera naxwaze tevlî şerê Reqayê bibe. Li aliyê din Hikûmet destnîşan dike ku eger Tirkiye tevlî şerê Reqayê nebe, dê YPG beşdar bibe û ev yeke ji bo Tirkiyê baş nabe. Erdoğan li ser vê mijarê, di daxuyaniya dawîn de diyar kiribû ku TSK li esmanî, Artêşa Sûriyê ya Azad dê li bejayî bikeve Reqayê, lê DYA li dijî vê yekê diyar kir ku Artêşa Azad ji bo şerê bejayî kêmber e. Li ser Operasyona Reqayê, di vê operasyonê de rewşa Tirkiyê û li ser beşdarbûn û nebeşdarbûna Tirkiyê û îhtîmalên benda Tirkiyê pisporê ORSAM'ê analîst Oytun Orhan û rojnameger û nivîskar Hamide Rencüs Yiğit ji BasNûçe'yê re axivîn.

### 'Reqa qada xwe îspatkirinê ye'

Rojnameger Hamide Yiğitê destnîşan kir ku bi stratejiyek û hevalbendên nû ve, DYA hewldide li Sûriyê di nava lîstik û hemangengiyê de bimîne. Yiğit aşkera kir ku DYA li Sûriyê kurdan weke hevalbendê xwe pêşkêş dike û Tirkiye dixwaze bi DYA'yê re tifaqa xwe bidomîne. Rojnameger Yiğit daxuyand ku pozîsyona kurdan di proseya çareseriya Sûriyê de dê diyarker be û herwiha DYA dixwaze vê yeke bi kar bîne û wiha pê de çû: "Tirkiye hîn jî hevalbendeke girîng e, ji ber qada veguhastina selefîstane e. Lê polîtikaya Tirkiyê ya dijî kurdan asteng e, ku Tirkiye li gel herdu hevalbendan tevbigere. Lê DYA ji bo berjewendiyên xwe yên stratejîk hemahengiyekê di nava van herdu hevalbendan de didomîne, ku hin caran ev hemahengiye dikeve, hin caran zêde dibe. Operasyona Reqayê bûye qada pêşbirka xweîspatkirinê." Yiğit ragihand ku DYA naxwaze Rûsya û rejima Sûriyê pêkve Operasyona Reqayê bimeşînin, DAIŞ'ê paqij bikin û li bakurê Sûriyê grûbên selefîst ji holê rakin, li beramberî vê yeke DYA û Hevpeymana Navnetewî dixwaze di Operasyona Reqayê de hêza sereke kurd bin û ji bo vê jî beriya Rûsya û Sûriyê plan danîne.

### 'Herî zêde Tirkiye dê zirarê bibîne'

Yiğit diyar kir ku Tirkiye ji mêj ve daxwaza herêma ewle dike, DYA'yê destnîşan kir ku ev xwesteka Tirkiyê dê bicih were û ev yeke weke 'DYA dixwaze Tirkiye tevlî Operasyona Reqayê bibe' hat şîrovekirin. Yiğit wiha domand: "Di rastiyê de bi korîdora Reqayê ve DYA, ji bo nexşekirina Sûriyê pêngaveke nû diavêje, di heman demê de herdu hevalbendên xwe (kurd, tirk) jî bicih dike û li qada Sûriyê bandor û hêza xwe didomîne. Lê dema DYA'yê planên lihevanîna YPG û Tirkiyê dikir, Artêşa Sûriyê îddîa kir ku ji bo Operasyona El Babê amedekariyan dikin. Ev tê wê wateyê ku hemû planên DYA'yê tên zanîn û li dijî van planan pêngavên zûtir ên Sûriye û Rûsyayê hene. Di vê rewşê de em dikarin vê bibêjin ku eger TSK bikeve Sûriyê tê wê wateyê ku Tirkiye dê bikeve nava avzêmê. Di nava ev şerê du mîhwerên navdewletî de, ti hêza Tirkiyê nîne ku stratejiyekê deyne. Weke dikeve Sûriyê nikare ji wir derbikeve. Li vê rewşê herî zêde Tirkiye dê zirarê bibîne."

### 'Tirkiye dê bikeve pozîsyona dagirkeran'

Li ser ketina Tirkiyê bo Sûriyê, ku Sûriye li hember vê bêdeng ma, Yiğit wiha axivî: "Ev pêngava Tirkiyê dihat zanîn, dibe ku Tirkiye bihata astengkirin, lê em dikarin bibêjin ku bi qestî rê li ber Tirkiyê nehat girtin. Divê em wusa vê yeke şîrove bikin; Tirkiye piştî vê hewldanê kete pozîsyona dagirkeran, ti destkeftiyeke Tirkiyê nebû. Li Netewên Yekbûyî li ser hewlên Sûriyê, Tirkiyê weke dagirker hat dîtin. Jixwe kesek bawer nake ku Tirkiye bi çend top û tanq û çend çekdarên selefîst ve li Sûriyê pêş dikeve û DAIŞ'ê têk dibe. Tirkiyê, ew devera ku bê şer û pevguherînê dest xistî dagir kiriye û DYA'yê jî ev dagirkirina Tirkiyê pejirandiye."

Yiğitê nirxandinên weke 'DYA li hember kurdan duserî dilive' şîrove kirin û got: "DYA'yê ji aliyekê ve alîkariya kurdan kir ku bikevin Menbicê û ji aliyekê ve piştgiriya Tirkiyê kir ku bikeve Sûriyê. Tirkiyê ji ber Menbicê qiyamet rakir û xwest kurd ji Menbicê derbikevin. Li ser vê finda DYA'yê dibe ku Rûsya bêdeng mabe. Rûsyayê xwest rêya DYA û kurdan pev veqetîne. Di vê rewşê de îşgala Tirkiyê ya li ser Sûriyê, li hiqûqa navnetewî dê kêşeyê bo çêbike. Ev yeke jî Rûsya û Sûriyê bihêztir dike. Ji ber vê dengê xwe li Tirkiyê bilind nekirin.

Yiğit destnîşan kir ku bombardûmana esmanî ya DYA'yê ya li ser leşkerên Sûriyê dê pêşerojê kêşeyan bo DYA'yê derbixe û got: "Çawa ev îşgal bo Tirkiyê kêşeyan derbixe, êrîşa esmanî jî bo DYA'yê dê bibe pirsgirêk. Ji ber ku derket holê DYA jî weke Tirkiyê bi DAIŞ'ê re di pêwendiyê de ye."

### 'Tirkiyê û Rûsya nêzikê hev bibin'

Lêkolînêr Oytun Orhan jî Operasyona Reqayê nirxand û diyar kir ku Tirkiyê dixwaze beşdarî Operasyona Reqayê bibe. Lê ji alîyên din vê jî dibêje 'eger bi DYA'yê re derbarê Arteşa Azad û YPG'ê de li hev neke, beşdarî opersyonê nabe. Orhan vê rewşê nirxand û got: "Eger Tirkiyê beşdarî operasyonê nebe, di çarçoweya siyasetê de dê di derveyê şer de bimîne. Eger tiştekî wisa bibe, Tirkiyê hewl bide ku bi awayeke din têkoşîna xwe bidomîne. Tirkiyê difikire ku Operasyona Reqayê hêza YPG'ê têr nake. Dibe ku YPG sernekeve. Reqa bajarê ereban e û DAIŞ li vê derê bi hêz e. Ji ber vê dibe ku YPG li wê derê sernekeve. Eger ev operasyon serbikeve jî YPG nikare li vê serbikeve. Ez difikirim ku operasyon serbikeve jî YPG'ê nikare rêveberiya vê bajare bike û ev gelekî dijwar e."

Oytun Orhan li ser helwesta Amerîkayê ya li hemberî YPG'ê jî sekînî û diyar kir ku eger Amerîka helwesta xwe ya li hemberî YPG'ê wisa bidomîne, Tirkiyê nêzîkê Rûsyayê bibe û ew jî tê vê wateyê ku Tirkiyê nêzîkê Esadê jî bibe. Orhan axaftina xwe wisa domand: "Rêveberiya Reqayê ji YPG'ê zêdetir, divê di destê rejîmê de bibe."

### 'Bê Esad rizgarkirina Reqayê dijwar e'

Orhan bal kişand ser beşdarbûna Esadê û got: "Bê rejîmê rizgarkirina Reqayê dijwar e. Hevkariya DYA û YPG'ê bes nîne. Lê bi beşdarbûna rejîm û komên ku rejîm piştevaniya wan dike, dibe ku Reqa bê rizgarkirin. Eger Amerîka Tirkiyê derveyê şer bihêline, Tirkiyê jî nêzikê Rûsya bibe. Ew ê bi Rûsyayê re hevkariyê bike. Ji ber vê ihtimal heye ku di navbera Tirkiyê, Rûsya û Esad de dê itifaqeke piçûk pêk bê. Eger itifaqekê qisa tê vê wateyê; polîtîkayên Tirkîyê yên derbarê Sûriyê de dê biguhere. Binali Yıldırım ji bal kişandibû ser vê veguhestine. Oytun bal kişand ser vê ihtimalê û wisa pê de çû: "Herwiha Binali Yıldırım jî di demek nêzîk de derbarê vê veguhestinê de axivîbû. Em ji Esad heznekin jî Esad aktorek e. Ji ber vê beşdarbûna Esad li Operasyona Reqayê divê bê pesend kirin û piştgirî kirin. Ev tê vê wateyê; rejîma Esadê ji bo paşeroja Sûriyê aktorekê girîng e. Ew destnîşaniya veguhestina rejîma Sûriyê dike."



## Siyasetmedar M. Emîn Pencwînî:

# Qendîl bo çareseriyê amade ye

“Bi baweriya min Qendîl ji navbeynkariya hemû aliyan re amade ye, Serok Barzanî be, Hikûmeta Herêmê Kak Neçîrvan be û kesayetên siyasî û her kes ku pêwendiya wan bi hikûmeta Tirkiyê re hebe bixwaze navbeynkariyê bike dibe pêk were, ew amade ne.”

Mehmed Salih Bedirxan

Siyasetmedar û navbeynkarê proseya çareseriyê yê sala 2011’an û 2013’an Mihemed Emîn Pencwînî, derbarê serdana HDP’ê ya Rêveberiya Herêma Kurdistanê ji BasNûçe’yê re axivî. Pencwînî da zanîn ku eger Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî, yan Serokwezîrê RHK’ê Neçîrvan Barzanî û aliyên din ê siyasî di navbera PKK’ê û Tirkiyê de navbeynkariyê bikin wê prosaya çareseriyê careke din destpê bike û Qendîl jî bo vê yekê amade ye.

Pencwînî li ser hevdîtina dawîn ya Abdullah Öcalan û birayê wî Mehmed Öcalan ji rawestiya û got: “Pêşniyara min ew e ku weke ku birêz Öcalan jî gotiye bila desteyek biçe cem Öcalan bi wî re bipeyvin û Öcalan bê di medyaya tirkî de ne di medyaya kurdî de biaxife û ji hêza çekdar û miletê Bakur û HDP’ê daxwaze bike û bibêje hemû alî bi hev re werin em vê meseleyê çareser bikin.”

Pencwînî li ser serdana HDP’ê ya ji bo Ewropayê jî rawestiya û qiha got: “Amerîka û Ewropa û heta dewletên cîran jî dîrekt û îndîrekt bi hikûmeta AKP’ê û PKK’ê re gotine ku proseya aştiyê di mesleheta Tirkiyê û miletê kurd û tirk de ye.”

**Desteya HDP’ê li Başûr bû. HDP’ê serdana partiyên siyasî kirin. Ew çima hatibûn Başûr?**

Ev xalek ji çalakiya siyasî û dîplomasiya HDP’ê bû. Ew dixwazin xwe bi awayekî demokrat nîşanî xelkêk Başûr bidin. Weke cîraneke baş hatin û hevdîtinan kirin. Berî herkesî Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî dîtin. Piştre rayedarên Partiya Demokrat Kurdistanê (PDK) dîtin û li gel hemû partiyên din yên Başûr rûniştin. Projeya wan ew e ku pireke diyalogê di navbera hemû hêzên siyasî yên kurd de çêbibe. Hêzên siyasî yên Başûr piştevaniya şoreşa Bakur û hêzên siyasî yên Bakur bikin û hewl dibin bi pêwendiyên siyasî û bazirganî û aborî ku bi Tirkiye re heye bikaribin bi vî rengî careke din ji bo proseya aştiyê bînin rojevê. Yanê çarçoveya hatina HDP’ê ber bi Başûr li ser vê esasê bû.

**Berî hatina HDP’ê ber bi Başûr, Mehmed Öcalan serdana İmraliyê kiribû, herwiha tê gotin ku Serokê PKK’ê Öcalan ji Serokê RHK’ê Mesûd Barzanî re ji bo destpêkirina proseya çareseriyê peyam şandiye û HDP ji bo yekê hatiye. Raya cenabê te li ser vê çi ye?**

Rastiyê bixwazî zanyariyên min li ser vê yekê nînin. Lê ji gotinên Mehmed Öcalan wisa xuya bû ku cenabê Öcalan gotiye, ‘ez ji hemû hêz û aliyên Başûr daxwaz dikim ku proseya aştiyê bişopînin û ji pêwendiyên xwe yên bi Tirkiyê re li gel cenabê Erdoğan û AKP’yê bi kar bînin ta ku careke din proseya aştiyê bê destpêkirin.’ Lê eger name yan peyamek şandibe ez jê haydar nînim.

**Selahattin Demirtaş bi Mesûd Barzanî û Kak Nêçîrvan re jî hevdîtin kir. Demirtaş got; ‘Em dixwazin ji bo proseya çareseriyê navbeynkariyê bikin.’ Desteya Hikûmeta Tirkiyê jî dê were Başûr. Wisa xuya dike ku Hikûmeta Tirkiyê jî xwe ji proseya çareseriyê re amade dike. Tu vê yekê çawa dinirxînî?**

Li Rojhilata Navîn û Kurdistanê guherînên mezin tên payîn. Yanê em li benda vê yekê ne ku guherînên mezin çêbibin. Ez difikirim ku piştî şerê Mûsilê guherînên ecêb li herêmê çêbibin. Ya girîng ew e ku kurd bikaribin li gel wan guherînan danûstandinan bikin û ji wan derfetan îstîfade bikin. Lewma jî dema ku birêz Demirtaş hatibû Başûr, li ser meseleya rewşa kurdên Başûr ya piştî şerê Mûsilê jî axivîne. Li ser vê esasê jî desteya hêzên siyasî yên Başûrê Kurdistanê çûne Bexdayê û bi hikûmeta navendî re ketine nava têkiliyê ji bo axiftina li ser qonaxa piştî rizgarkirina Mûsilê û zeîfbûna DAIŞ’ê û rewşa Kurdistanê.

Dixwazim vê yekê jî bibêjim ku piştî rizgarkirina Mûsilê wê gelek tiştên ecêb çêbibin. Niha gelek tişt nayên pêşbînîkirin ji ber vê yekê jî pêwîst e pêwendiya hemû hêzên kurd li her çar parçeyan pêwendiyeke demokratîk be. Pêwîst ew pêwendî li gor meslehet û berjewendiya netewî û niştimanî be. Lewma jî diyalog û hevbawerî û hevqebûlkirin niha ji her demekê pêwîsttir e. Û ez hatina desteya HDP’ê ya Başûr gelekî baş dinirxînim. Ew jî di serdana xwe de serketî bûn. Em dîsa vegerin ser xala esasî ya piştî rizgarkirina Mûsilê ku wisa xuya ye gelek tiştên ecêb dê biqewimin.

Desteya HDP’ê dema ku hatibûn Başûr gelek rexne li hikûmeta Erdoğan kirin û gotin hikûmet miletê nerahet dike, hezaran kes ji karê xwe hatine derxistin, hezaran kes hatine girtin, terr û hişk di nav hev de dişewite, hikûmet ji ser lîsta xwe her roj komekê ji kar derdixe, rewşa Tirkiyê aloz e. Desteya Hikûmetê ku ber bi Başûrê Kurdistanê ve tê dixwaze bibêje ev gotin ‘pûç û betal in, hikûmeta me baş e û em demokrat in, em mafê mirovan diparêzin û em li dijî kurdan nînin.’ Dixwazin bibêjin ’em dijî kurdan nîn in, tenê em dijî terorê ne.’ Mimkûn e ji bilî partiyan kesayet û rewşenbîrên Başûr jî bibînin û mimkûn e bi vî awayî hatina HDP’ê bê bandor bikin. Bi baweriya min wisa ye, lê xelkê Başûr û hêzên siyasî yên Başûr çiqas vê yekê qebûl dikin ev meseleyeke cuda ye.

**Gelo PKK’ê jî ji bo proseyeke nû amade ye?**

Wisa ku ez dizanim PKK’ê hertim ji bo proseya aştiyê re amade ye û wan ti caran ev yek red nekiriye. Hemû berpirsên PKK’ê biçûk û mezin di hemû medyayê de, çi yên kurdî û çi yên dinyayê de gotine ku ‘em ji bo proseya aştî û çareseriyê re amade ne.’ Ew hertim dibêjin ji bo rêyên aştiyane û diyalogê re amade ne, li ser van xalên ku birêz Öcalan destnîşan kirine û bi riya desteya HDP’ê şande der û li Dolmabahçeyê hate xwendin. Lê bi baweriya min di vê qonaxê de meseleya aştiyê nayê rojevê.

**Desteya HDP’ê piştî ku ji Başûr vegeriya serdana Ewropa kir yanê di medyayê de wisa tê gotin ku Amerîka û Ewropa jî dixwazin ku proseya aştiyê çêbibe. Amerîka û Ewropa di vê qonaxê de daxwazeke çawa ji PKK’ê û AKP’ê bikin?**

Amerîka û Ewropa û heta dewletên cîran jî dîrekt û nedîrekt bi hikûmeta AKP’ê û PKK’ê re gotine ku ‘proseya aştiyê di meslehet û berjewendiya Tirkiyê û miletê kurd û tirk de ye.’ Lê ez wisa difikirim wan bi mentiqa pozbilindî û xwe mezinbîniya heta niha bala xwe nedane ser van tiştan. Êdî ez nizanim ka piştî guherînên herêmê û rizgarbûna Mûsilê û lewazbûna DAIŞ’ê dê ew siyaseteke çawa bigirine ber xwe, hêviyên min zêde nîn in ku Tirkiye guhdariya Amerîka û Ewropayê bike.

**Di hevdîtina bi brayê xwe re de, Abdullah Öcalan gotibû, “eger dewlet dixwaze bila du nûneran bişîne, ez di nava 6 mehan de meseleya kurd çareser dikim.” Ew ê Hikûmet guh bide banga Öcalan? Eger Hikûmetê dest bi çareseriyê kir divê nexşerêyeke çawa deyne ber xwe?**

Pêşniyara min ew e ku weke birêz Öcalan gotiye bila desteyek biçe cem wî bi wî re bipeyvin û Öcalan di medyaya tirkî de biaxife û ji hêza çekdar û miletê Bakur û HDP’ê daxwaze bike û bibêje ‘hemû alî bi hevre werin em vê meseleyê çareser bikin.’ Lê bi nêrîna min dewlet dixwaze bi riya hin kesayet û grûbên medenî li ser navê çareseriya meseleya








“Ji gotinên Mehmed Öcalan wisa xuya bû ku cenabê Öcalan gotiye, ‘ez ji hemû hêz û aliyên Başûr daxwaz dikim ku proseya aştiyê bişopînin û pêwendiyên xwe yên bi Tirkiyê re li gel cenabê Erdoğan û AKP’yê bi kar bînin ta ku careke din proseya aştiyê bê destpêkirin.’ “

kurd bê meydanê û ji bilî hêza çekdar û Qendîl û PKK’ê. Ew dibêin, ‘PKK terorîst e’ û ew dixwazin bi hêzeke medenî re danûstandinê bikin. Yanê Hikûmet dixwaze hêza çekdar ji xelkê cuda bike û milet ji hêza çekdar cuda bike, bi vî rengî ev mesele nayê çareserkirin.

Tenê riya ku bikaribe meseleya kurd çareser bike bi riya hêza çekdar, PKK û Öcalan e. Divê berê xwe bidin Qendîl û İmraliyê. Weke ku berê desteya HDP’ê diçû İmraliyê û dihate Qendîlê û peyam dianîn û nêrînên kesayetên Başûr jî werdigirtin, bi vî rengî nexşerêyek li ser vê meseleyê çêbikin. Meseleya çareseriyê zindî dibe û tê rojevê. Lê eger hikûmet siyaseta ku niha girtiye ber xwe û dişopîne û dibêje ‘hêza çekdar terorîst in û em dixwazin bi hêzeke medenî re danûstandinê bikin’ û çend kesayetan bînin û bibêjin ’ew nûnerê kurdan in’ û bi wan re bicivin, ew bi ser nakevin. Nûnerên kurdan Qendîl û Öcalan in. Eger dewlet bi van re têkeve diyalogê ez wisa difikirim ne ku di heyama 6 mehan belkî di heyama 3 mehan de jî ev mesele bê çareserkirin û diyalog bê destpêkirin. Kurd jî vê yekê dixwazin, kurd jî dixwazin li Tirkiyê weke miletekê li gorî qanûnê bi wan re bê reftarkirin û bê îtîrafkirin ku miletek heye ku miletê kurd e û bi zimanê xwe siyasetê bikin, bi zimanê xwe bixwînin û bi zimanê xwe çand û folklor û stranên xwe bibêjin, kurd naxwazin di vê qonaxê de Tirkiyê parçe bikin. Naxwazin dewletê çêbikin. Ew heq jî di qanûnên netewên yekgirtî de jî heye û ew maf rewa ye ji bo her miletekî.

**Li gor te siyasetmedar û rewşenbîrên Başûr çawa dikarin navbeynkariya proseya çareseriya Bakur bikin? Çend sal rewşeke aram çêbûbû, gelo dîsa dibe ku em tiştekî wisa bibînin?**

Bi baweriya min Qendîl amade ye her kes ku bixwaze navbeynkariyê bike, Serok Barzanî be, Hikûmeta Herêmê Kak Neçîrvan be û kesayetên siyasî û her kes ku pêwendiya wan bi Hikûmeta Tirkiyê re hebe bixwaze navbeynkariyê bike dibe pêk were. Ew amade ne. Lê gelo hikûmeta Tirkiyê amade ye ku wisa bike û protokolekê binivîsine û nexşerêyekê çêbike û bibêje ‘em li ser vê esasê li meseleya kurd dinêrin.’ Niha weke fûtbolê top li zemîna hikûmeta Tirkiyê û Erdoğan de ye. Wisa ku ez dizanim dosya kurd li cem şexsê cenabê Erdoğan e. Eger Hikûmet bixwaze bila hemû partî û şexsiyet jî hebin, rewşenbîr jî hebin, kesên wek İsmaîl Beşîkçî jî hebin û werin nexşerêyekê amade bikin. Demekê Öcalan got; ‘bila 50 aqilmend werin biryar bidin ew çi bibêjin ez qebûl dikim.’ Qendîlê jî ev tişt got. Lê heta niha Hikûmetê tiştek qebûl nekiriye. Lê ez nizanim eger piştî guherînên şerê Mûsilê ev siyaset bê guhertin yan na. Lê wisa xuya ye ku eger ev yek neyê guhertin dibe ku piştî şerê Mûsilê rewşa Tirkiyê jî bibe weke rewşa İraq û Sûriyê. Pêwîst e ku Hikûmeta Tirkiyê meseleya kurd bi awayekî çareser bike. Em dibînin ku ti caran partiyek bi tenê nikare bi ser bikeve weke ku me li welatên din jî dît. Li Tirkiyê jî tenê partiyek nikare bi ser keve ji ber ku gelek etnîk hene, kurd, laz û tirk û çerkez û ermen hene. Bi nêrîna min divê Tirkiye di siyaseta xwe ya giştî de venêrînekê bike.

**Operasyonên Mûsil û Reqayê tê xuyakirin û diyar e ku Pêşmerge dê roleke mezin bilîze, wisa xuya ye ku hêzên hevpeyman dixwazin li Reqayê jî bi YPG’ê re hemkariyê bikin. Yanê piştî ku Reqa û Mûsil hatin rizgarkirin, gelo kurd dibin hêza sereke di Rojhilata Navîn de? Siberojeke çawa li pêşiya kurda ye?**

Bêguman di azadkirina Mûsil û Reqayê de kurd roleke mezin dilîzin bi taybetî jî li Reqayê. Tirkiyê gelekî hewl dide û fişar dixe ser hêza hevpeyman ku kurd beşdarî şerê Reqayê nebe û hêza PKK’ê ku li Şengalê avabûye beşdarî şerê azadkirina Mûsilê nebe. Lê Tirkiye bi ser neket. Kurd beşdarî şerê Mûsilê û Reqayê dibe û hevpeyman û bi taybetî jî Amerîka alîkariya hêza kurd dikin û bi qenaeta min piştî azadkirina Mûsil û Reqayê meseleya kurd careke din û pêngaveke din ber bi pêş ve diçe. Wisa xuya ye ku hêza Şengalê jî di şerê azadkirina Mûsilê de beşdar dibe û piştre diçine nava Mûsilê. Ji bo hemû dinyayê re xuya bû ku kurd dikarin roleke mezin di lêdana DAIŞ’ê de lîstin. Û wan çawa ku karîn li Kobanê sehra DAIŞ’ê bişkênin, di vî şerî de jî herwisa dikarin wiha bikin. Tenê tiştek heye ku kurd divê yek bin û hêza kurd û eqlê siyasî ya kurd divê bibe yek û diyalog di nava partiyên kurd li her çar parçeyan hebe û li ser meseleya kurd li hev bikin.

**Mimkûn e ku fikra Kongreya Netewî dîsa were destpêkirin, wisa xuya ye ku yek ji mijarên ku Demirtaş li Başûr behsa Kongreya Netewî bûye, gelo li ser vê meseleyê ti amadekarî û danûstandin hene?**

Eger Kongreya Netewî jî nebe, lê piştî qonaxa azadkirina Reqa û Mûsilê dibe ku civînek bi navê ‘Şêwira Netewî’ hebe û di vê civînê de qala vê yekê bê kirin ku çawa Kongreya Netewî were destpêkirin. Gelo niha wext e yan çend salên din. Ew nakokiyên ku di navbera PKK û PDK û YNK’ê de hebûn hîn jî hin ji wan mane. Lê bi baweriya min piştî van guherînan rewş dê amade bibe ji bo ku Kongreya Netewî bê lidarxistin.

**Di van rojan de Serokê Heremê Barzanî serdana Bexdayê kir, Barzanî piştî hevdîtinan de got, ‘em daxwaza serxwebûnê dikin ne cudabûnê,’ gelo rewşa Hewlêr û Bexdayê ber bi kîjan aliyê ve diçe?**

Bi giştî ew desteya ku bi serokatiya Barzanî çûye Bexdayê, tiştekî posîtîf bû û di wextê xwe de bû û ji hemû hêzên kurd yên Başûr pêk hatibû û wan karîn li ser navê kurdên Başûr bipeyvin ku pir girîng bû, wan li ser du xalan qise kirin. Meseleya aborî ku qeyranek e mezin e û meseleya neft û gaza di navbera Hewlêr û Bexdayê de ye ku mijûl in li hev dikin. Meseleya din jî şerê Mûsilê ye ku gelo Pêşmerge beşdarî şer bibin yan na û çawa beşdarî bikin û piştî rizgarkirina Mûsilê rewşa Pêşmerge dê çawa be. Ew tişt li Bexdayê hatine minaqişekirin. Li ser van tiştan lihevkirin çêbûne. Meseleya din jî qala vê yekê kirine ku gelo referandûmê bikin yan na. Lê raya giştî ya Hikûmetê li ser van meseleyan hîn bi awayekî fermî nehatiye ragihandin. Lê wisa ku xuya ye meseleya referandûmê mafê rewa yê kurdan e.

**PYD’ê jî amadekariya ragihandina federasyonê dike, berî hefteyekê konfransek li Ewropa li dar xistin. Gelo federasyona PYD’ê wê ji aliyê dinyayê ve bê qebûlkirin, proseya siyasî ya Rojava ber bi kîjan arasteyê ve biçe? Ew dikarin meseleya federasyonê weke kartekê ji bo beşdarîkirina şerê Reqayê bi kar bînin?**

Belê rast e ku danûstandina wan li gel Rûsya û Amerîka û Îranê heye, lê tenê mesele Tirkiye ye ku niha çûye nava xaka Sûriyê. Weke ku dewleta Tirkiye gotiye ‘em naxwazin kurd li Sûriyê statûyekê bi dest bixin’ û heta gotin ’em nahêlin ew gundêkê jî kontrol bikin.’ Lê bi baweriya min ew karta Tirkiyê jî niha şewitiye. Amerîka û Rûsya jî dê piştevaniya federasyona kurdên Rojava bikin.



### Spahî Besîc

# Tiliyên Îranê li şerê Rojhilata Navîn

Elî Xweşmêr

Ji ber pirsgirêkên siyasî û civakî Rojhilata Navîn dikele û rojeke aram li heremê derbas nabe. Şer û awarebûn û kuştin rojbiroj zêdetir dibe. Herwiha rewş tevlihev e. Komên curbicur yên etnîkî û mezhebî ava bûne û li dijî hevûdû şer dikin. Li Sûriyê û Îraqê êdî têgeha sinoran bê mane bûye. Gelek welat tevlî vê şerê wêranker bûne. Tiştê herî bêwate û ne girîng mafê mirovan û mirina xelkê bê guneh e.

Hikûmetên ne demokratîk û mezhebî yên weke Îranê li gor îdeolojiya xwe destêwerdana gelek welatên derûdorê dikin. Li Lubnan, Yemen, Behrên, Sûriyê û Îraqê bi awayekî rasterast û nerasterast hebûna Îranê tê dîtin. Spaha pasdaranê Îranê li Sûriyê û Îraqê hin grûpên şîe û mezhebî organîze kirine û navê Parêzerên Heremê li xwe kirine. Gelek zanyarî hene ku Îran ji bo armancên xwe û şerê Sûriyê û Îraqê efxaniyan jî dişîne wê derê ku ew li ser hesabê Îranê şer dikin.

**Ahengerî: 10 hezar besîcên li heremê şer dikin**

Siyasetmedar Kawe Ahengerî qala hezaran belegeyan dike ku Îran destêwerdana welatên herêmê dike û dibêje ev tişt eşkere ye û nayê inkarkirin. Kawe dibêje Îranê kopiyek ji hêza xwe ya Besîc li Îraqê jî ava kiriye ku navê wê grûpê Heşdî Şeibî ye. Û bi hemû awayan alîkariya wan dike. Kawe li ser destêwerdana Îranê ya li herêmê rawestiya û wiha got: “Bi hezaran belge hene ku Îran destêwerdana Lubnan, Filistîn, Yemen, Iraq, Sûriyê û Behrenê dike. Ev tiştek nîne ku were inkarkirin. Gelek ji kesên ku Îranê weke endamên spahê pasdaran şandibûn Sûriyê li wir hatine destgîrkirin ku eşkere bû ku ew efxanî ne ku spah ew ji bo armancên xwe şandine wê derê. Teqrîben 10 hezar endamên spah û besîc yên Îranê niha li Sûriyê ne û li wir şer dikin. Li Îraqê jî em êdî tê dîtin ku ew tiştekî eşkere ye û belge hene. Û nayê înkarkirin ku milîsên Îranê li wir aktîv in, heta Heşdî Şebî jî bi awayekî kopiyek ji besîca Îranê ye.”

**‘Îran hemwelatiyên xwe dixapîne’**

Ahengerî qala vê yekê dike ku çima Îran destêwerdana welatên derûdorê dike û dibêje armanca Îranê ji vê yekê ew e ku xelkê xwe yê nerazî li hundirê Îranê bigihîne vê qenaetê ku Îran li gorî welatên din cihekî gelekî ewle ye. Kawe dibêje Komara Îslamî siyaseta xwe ya destêwerdanê ji bo meseleyên xwe yên navxweyî bi kar tîne: “Bi baweriya min sedema herî girîng ji bo di xaleta Îranê li welatên derdorê û cîran, tirsa ji kêşe û meseleya navxweyî ye. Di rastiyê de Komara Îslamî bi çêkirin cehenemê di welatên cîran de dixwaze xelkê xwe heta bi awayekî demkî bigihîne vê qenaetê ku ew ji rewşa niha ya Îranê razî bin û dixwaze xelkê Îranê li rewşa Sûriye, Iraq û welatên derdorê binêrin û rewşa wan ya aloz bibînin. Di rastiyê de ji vê yekê weke taktîkekê sûdê werdigire ku xelkê Îranê iqna bike lê xelkê Îranê têgihîştî ne û dîroka wan ya siyasî dûr û dirêj e.”

**‘Komara Îslamî di qonaxa xwe de ye’**

Kawe Ahengerî amaje bi vê yekê dike ku rejima Îranê di qonaxa dawîn ya temenê xwe de ye: “Bi baweriya min Komara Îslamî di qonaxa herî dawî ya temenê xwe de ye. Yanê hemû fakt qala vê yekê dikin ku rejîmeke totalîter ku ketiye qonaxa sêyem ya temenê xwe ku di rastiyê de qonaxa dawî ya her rejîmeke totalîter e, lê ez wisa bawer dikim ku lihevkirina bi welatên rojava re plan û projeya herî dawîn bû ku rejîma Îranê dikarî ji bo sazîn li gel welatên derve bi kar bîne. Lê ev yek jî bi ser neket û şikest xwar.”

**Marûfî: Destêwerdana derve hêmaneke Îranê ye**

Lêkolîner û nivîskar Helmet Marufî jî behsa siyaseta giştî ya Komara Îslamî dike û hêmanên çarîne ku rejima Îranê li ser hatiye avakirin bi nav dike. Marufî qala têgeha “henardekirina şoreş”a Îranê dike û dibêje Komara Îslamî li ser vê esasê baska derve ya spaha pasdaran bi navê Spaha Qudis damezirandiye. Marufî li ser hêmanên rejima Îranê jî rdibêje Komara Îslamî li ser çar hêmanan hatiye avakirin: Îslam, şîebûn, henardekirna şoreşê û Xumêynîzm, dijayetîkirna emperyalîzmê -mebesta wan Amerîka û Sovyet û Brîtanya bû - ku niha bi Rûsya ra têkiliya wan gelek e û ew dûrişim hatiye guhertin.

**Îran şerê wekaletî dike**

Li aliyê din Marûfî li ser destêwerdan Îranê û şandina milîşeyan bi welatên herêmê jî wiha dibêje: “Spah gelek destêwerdanan di karûbarê welatên cîhan û navçeya Rojhlata Navîn da dike, lê ew bi du şêwazan wan karan dike. Şêwaza rasterast; Ew bi wî watayê dihê gotin, ku Spaha Quds a Îranê, bi xwe û hêzên xwe werin Sûriye û Îraqê şer bikin û beşdarî şer bibin, hem hêzên wê hene li wir hem jî kesên pispor yên serbazî dişîne û rahênan û perwerdehiya grûpên ser bi Spaha Qudis dike û hem pere dide wan. Pasdarên Îranê, bi xwe li hinek ciyan beşdariyê nake lê hêzên ser bi wê û bi piştewanya Îranê di warê serbazî, leşkerî û pere û aboriyê de şer dikin lê ew şer di berjewendiya Îranê de ye û bi wekalet ji bo Îranê tê kirin. Weke Hizbullaha li Lûbnanê yan hûsiyên Yemenê. An jî bandên mafyayên madeyên hoşber li sinorê navbera Meksîka û Amerîkayê ku li gor zanyariyan, Îran van tiştan bi wan dide kirin ew jî bi rêya çekdarên Hizbullaha Lûbnanê û ew jî berjewendiyên Tahranê diparêzin.”

Marûfî li ser komên Îranî yên li Sûriyê û Îraqê rawestiya û wiha got: “Niha Îran bi şêweyeke rasterast li welatên: Iraq, Sûriye, Yemen û çend welatên din destwerdanê dike. Li Sûriye û Îraqê û bi taybetî li Sûriye gelek hêzên wî hene ku ji îranî, iraqî, pakistanî û efxaniyan pêk hatine. Ev kom bi navên; Zeynebîyûn, Tahrîyûn Bedir, Hizbullaha Sûriye, Gurdana Ebulfezl û ...hwd dixebitin.”

**‘Zarokên Îraqî bi pasaportên Îranê li Sûriyê ne’**

Marûfî dibêje Îran gelek zarok jî şandine şerê Sûriyê û Yemenê û daxuyand ku beşdariya zarokan di şerê Sûriyê de bi destê Îranê ye. Amarên heyî dibêjin ku 4 hezar zarokên jêr 18 salî niha li Sûriyê ji bo Îranê şer dikin û rojane 20 heya 100 zarok ji wan zaroka têne kuştin, piraniya wan zarokan Îraqî ne û gelekî wan bê destûr û haya dayîk û bavê xwe beşdarî wî şerê bûne û Îranê pasaporta Îranî daye wan heya biçin Sûriyê. Li Yemenê jî şer di nav bera hûsiyan ku şîe ne û dewleta Elî Ebdûla Salih da heye û welatê wek Kuwêyt û Qeter û Siûdiye jî piştewaniya dewleta Yemenê dikin û wî şerî heya niha gelek zerer li wî welatî daye.

Li gor Marûfî, Serokê Hizbullaha Lûbnanê jî bi dehan caran eşkere gotiye ku Îran piştewaniya wan dike hem ji hêla serbazî û leşkerî ve hem jî ji hêlan aboriyê ve. Li Îraqê jî gelek hêzên ser bi Îranê mîna Heşdî Şabî û Spaha Bedir û Hizbullaha Îraqê çêbûne ku li gor zanyariya saziyên mafê mirovan, wan gelek karên nemirovî û hovane li Mûsil û ciyên azadbûyî li gel sunneyan kiriye û sêdare û kuştin û bê navnîşankirin beşek ji wan kirdaran e.



# Perwerde bê mamoste ma!



> Piştî hewldana derbeya leşkerî ya 15’ê Tîrmehê Hikûmetê di bin siya rewşa awarte de dest avet gelek dezgehan û 12 hezar mamosteyên bajarên kurdan ji kar hatin derxistin. Herwiha hejmareke mamosteyan jî hatin girtin. Li bajarên kurdan serdema vebûna dibistanan destpê kir lê perwerde hêj tuneye.

Kerem Arî

Piştî hewla derbeyê ya 15’ê Tîrmehê, Hikûmetê bi hinceta rewşa awarte gelek Biryarên bi Hukmê Qanûnan derxistin. Di bin siya van biryaran de piraniya wan ji bajarên kurdan û endamên Eğitim Senê nêzîkî 12 hezar mamoste ji kar hatin derxisin, ji wan 9 hezar û 843 mamoste endamên Eğitim Senê ne. Li gorî Wezaretê, ev mamosteyan li dijî Qanûna Memûrên Dewletê ya hejmara 657 û xalên 6, 7, 8 û 10. tevgeriyane û li ser vê yeke bi biryareke giştî ya Lijneya Wezîran ji kar hatine derxistin. Lê wezaretê tu hincet û sûcê diyar negihandiye destê mamosteyan. Li gorî dozgeran têkiliya van kesan bi PKK’ê re heye. Wezareta Perwerdehiyê jî jî radigihîne ku lêpirsîn dewam dikin, ku sûcdar û bê masûm bên cudakirin. Li gorî îstatîstîkan, li Amedê 4 hezar û 300, li Mêrdînê hezar û 780, li Êlihê 946, li Semsûrê 466, li Rihayê 462, li Elezîzê 99, li Bedlîsê 97 û li bajarên din jî 325 endamên Eğitim Senê ji karê xwe bûn. Li aliyê din li Dêrsimê 504 mamoste ji kar bibûn, ev hejmar nîvê hemû mamosteyên Dêrsimê bû, ji ber ku perwerdehî bi rê ve neçû 419 mamoste dîsa vegeriyan ser karê xwe.

Herwiha gelek wêjevan û xebatkarên kurdî yên weke; Şener Özmen, Dîlawer Zeraq, Lal Laleş, Sîdar Jîr, Kemal Varol, İlhami Sidar,Yusuf Ziya Döğer, Fahriye Adsay di nava van mamosteyan de ne.

Li gorî agahiyan, di tarîxa Komara Tirkiyê de herî zêde vê carê mirov ji kar hatine derxistin. Ji ber vê yeke gelek partiyên siyasî, sendîka û dezgehên mafên mirovan nerazîbûna xwe anîn ziman. Herwiha Komeleya Mafên Mirovan (İHD) kampanyaya bidawîbûna rewşa awarte da destpêkirin, ku pêşiya van neheqiya bê girtin. Dîsa herî dawî li Amedê 7 mamosteyên endamê Eğitim Senê bûn hatin girtin.

Li gorî daxuyaniyên Hikûmetê tu valahî di pergala perwerdehiyê de nîne, lê li gorî pisporan bi gelek avahiyan valahî li Kurdistanê peyda bûye û ew yek ji metirsiyê durist dike.

Hevseroka Eğitim Senê ya Amedê Hava Karahancı, qiqûqnas û Serokê Şaxa Amedê yê Komeleya Mafên Mirovan a Tirkiyê Barış Yavuz, Serokê Baroya Wanê Murat Timur li ser van ji karderxistin û girtina mamosteyan ji BasNûçe’yê re axivîn. Baldaran nerazîbûna xwe li ser van bûyeran diyar kir û ragihandin ku ji karderxistin û girtina mamosteyan ne hiqûqî ye.

**Karahancı: Tu sucê endamên me nîne**

Hevseroka Eğitim Senê ya Şaxa Amedê Hava Karahancı daxuyand ku li gorî wan tu endamên wan kiryareke xirab ku weke sûc were hisabkirin nîne, lewma ev kese kedkarên perwerdehiyê ne û wisa got: “Li vî welatî ewqas insanê sûcdar hene ku lê van mamosteyan bi salan li zanîngehan xwendine, Mirovên rewşenbîr in û ji bo xelkê xîzmet dikin, kesek di wê qineatê de nîne ku ev mamoste sûcdar in. Divê hemû demildest vegerin ser karê xwe. Lê heta vê gavê tiştek bi vî rengî nebûye. Tenê li Dêrsimê hin kes vegerîn ser kar, lê li wê derê jî lêpirsîn didomin.”

**‘Em weke tasfiyê dinirxînin’**

Karahancı aşkera kir ku Piştî lêpirsîna 29’ê Berfanbarê li ser ji karderxistinan behs dihat kirin, lê wan nedifikirî ku ji ber grevan ev mualeme dê wan bê kirin. Karahancı wiha domand: “Em vê yeke weke tasfiye dinirxînin. Armanca van hemû kiryaran jinavbirina Eğitim Senê ye, ku di sîstemeke nû avabikin. Bi rastî eve êrîşeke li dijî ewlehiya kar e, bi giştî dixwazin muxalefetê têk bibin. Sendîkaya me, polîtikayên li herêma me dihatin kirin, di rewşa pevçûnan de binpêkirina mafên mirovan derdixist holê û mafê zarokan ê perwerdehiyê û jiyanê diparast. Li ser vê têkoşîn û berxedana me bi vî rengî muamele li me tê kirin.”

Karahancı balê kişand ku di warê perwerdehiyê de hemû deman valahiyek li Tirkiyê hebûye û îqtîdar dixwaze dibistanên şexsî û mamosteyên bê kadro zêde bike û di vê rewşa avarte de derfet dît ji bo van kiryarên xwe. Karahancı destnîşan kir ku ew li hiqûqa navxweyî ya Tirkiyê ti encaman nastînin û serî li Şûraya Dewletêdane dane.

**Nûnerê TİHV’a Amedê Barış Yavuz: Mamoste bê lêpirsîn ji kar hatine avêtin**

Nûnerên THİV’ê yê Amedê Bariş Yavuz destnîşan kir ku xelk ji rewşa dawîn gelek ditirse û bê hiqûqî peyda bûye. Yavuz girtina mamosteyan û îxraçkirina bi tûndî rexne kir û got: “Vê demê 40 hezar mamoste ji kar hatin derxistin. Gelo çi wateya wê heye ku beriya perwerdehî dest pê dike ev mamoste ji kar tên derxistin? Heyama perwerdehiyê destpê dike û bê lêpirsîn mamoste ji kar tên derxistin. Mirovan mafê xweparastinê heye, ev mafeke gelek bingehîn e. Divê mirov bizanibin bi çi sedemê tên cezakirin û li ser van tohmetan mafê xwe biparêzin. Lê ev yeke nehatine pirsîn û bi yekser mirov ji kar hatin derxistin.“

Hiqûqnas Yavuz destnîşan kir ku bê pirs û hincet mirov ji kar tên avêtin û wisa domand: “Em li ber yekpartîbûnê ve diçin, eger vê gavê kêşe li parlementoyê ne serokatiya partiyekê bên çareserkirin, eger mirovek bibêje ez ê bikim serokatiya partiyê bila bo min karê min çareser bike, divê herî zêde hîqûq xwe ji vê yeke berpirsiyar bibîne. Îro ji ber belavokeke medyaya civakî mirov ji karê xwe dibe. Ev mesele ji bo ku xelk bi dadê bê darizandin dê biçe Dadgeha Mafên Mirovan ya Ewropayê.”

**Serokê Baroya Wanê Murat Timur: Rewşa awarte pêş li muameleyên keyfî vedike**

Serokê Baroya Wanê Timur diyar kir ku di rewşên asayî de kesek nikare tiştek bi vî rengî bike û mamosteyan ji kar derbixe û got: “Li dewletê, di mercên asayî de, diyar e ku ka ji ber çi sedeman kesek ji kar tê avêtin. Lê gavê proseyeke awarte heye. Biryarên di Hûkmê Qanûnê de bi avayekî ne asayî ev kes ji kar hatine derxistin. Ev rewşa avarte pêşiya muameleyên şexsî û keyfî vedike, ji bo wê derfet çêbû. Ji ber wê îqtîdar dixwaze ev rewş bidome. Serokkkomar li ser vê yeke daxuyaniyek da û aşkera kir dibe hîn jî gelek bidome. Bi qanûnî tu nikarî bi vî avayî kesekê ji kar derxî. Pêşîn divê bê tohmetbarkirin li ser mijarekê, piştre li ser van tohmetan dixwazin ew kes xwe biparêze. Piştî xweparastinê eger ku delîl têra bikin ji kar tê derxistin. Lê Biryarên di Hûkmê Qanûnan de ev usule ji holê rakir.”

Hiqûqnas Timur ragihand ku ev yeke hem li dijî qanûnên Tirkiyê hem jî li dijî qanûnên navnetewî ne. Timur wisa domand: “Di hiqûqa navnetewî de ‘prensîba ewlehiya hiqûqê’ heye, ew prensîb jî ew e ku insan ji layê hiqûqû ve xwe ewle dibînin. Lê cihê ewlehiya hiqûqî lê tune be em nikarin behsê dad û darizandineke adil bikin. Di vê rewşê de jî prensîba ewlehiya hiqûqî hatiye binpêkirin. Em wê qineatê de ne ku ev jikarderxistin hemû dê ji Dadgeha Mafên Mirovan ya Ewropayê vegerin. Bi rastî Destûr Tirkiyê dikarî li ser vê yekê biryarên baş bide, lê vê dawiyê 2 endamên wê hatine girtin, ji ber wê Destûr bê bawer bûye û min ne bawer e biryareke baş derbikeve. Hiqûqa navxweyî vê kêşeyê çareser nake.



Barış Yavuz | Havva Karahancı | Murat Timur

# OHAL'ê li televîzyonên kurdî xist

Hêmin Dildar

Qanûnên rewşa awarte (KHK) di dawiyê vê mehê de derbeyeke li televîzyon, radyo hin malperên kurdî jî xist. Şeva 29'ê mehê 12 kanalên asmanî di çarçoveya biryarên rewşa awarte de hatin girtin. Herwiha mahwareya TÜRKSAT'ê ekrana van televîzyonan reş kir. Kanalên; Hayatın Sesi TV, Azadî TV, Jiyan TV, Van TV, TV10 û Zarok TV di nav de, weşanên 12 televîzyonan di çarçoveya Biryara Hikmê Qanûnan (KHK) de ji peyka TÜRKSAT'ê hatin derxistin û weşana wan hatin rawestandin.

Nûnerên kanalên ku ekranên wan hatin reşkirin eşkere dikin ev yek derbeyeke li medya û azadiya ramanê. Herwiha li aliyê din nûnerên televîzyonan tekeziyê li ser wê yekê dikin ku ji ber rewşa awarte heye ew nikarin doza mafê xwe bikin û heta niha rayedarên Lijne ya Bilind ya Radyo û Telewîzyonan (RTÜK) jî derbarê girtina wan de tu agahî nedane. Ligel girtina televîzyonan malperên wan jî hatine girtin û rê li ber wê yekê hatiye girtin ku ew ji ser înternetê weşana xwe bikin. Li aliyê din hat zanîn ku weşana malpera televîzyona İMC ya beriya bi salekê ji TÜRKSAT'ê hatibû derxistin jî hatiye rawestandin.

Girtina televîzyon û radyoyên bû sedema nerazîbûne raya giştî ya Tirkiyê û kurdan. Herwiha, gelek rêxistin û rewangehên navdewletî yên rojnamegeran jî girtina televîzyonan şermezarkirin û weke binpêkirina mafê derbirînê û rêlibergirtina azadiya medyayê destnîşan kirin.

Nerazîbûna girtina yekem kanala zarokan a kurdî, Zarok TV jî hîn jî berdewam dikin. Li ser torên medyaya civakî bînerên Zarok TV'yê û xebatkarên medyaya kurdî bi kampanyayan piştgiriya xwe ji Zarok TV û kanalên din re tînin ziman.

**Dilek Demiral: Zarok TV kanala hemû kurdan e**

Koordînatora Giştî ya Zarok TV'yê Dilek Demiral da zanîn ku ew bi girtina televîzyona wan gelekî metelmayî bûne. Herwiha, wan serdana partiyên siyasî kiriye û ew dixwazin li dijî van kiryararan yekhelwest bin û hemû partiyên siyasî bersivên erênî dane wan. Herwiha Demiral, daxuyand ku ne RTÜK, ne TÜRKSAT kes tu karî li xwe nagire û ew niha niharin bi awayekî fermî li dû mafê xwe bigerin. Demiral anî ziman ku parlemenerên hemû partiyan sozdane wan da ku çareseriyekeê peyda bikin lêbelê heta niha tu encam derneketine û televîzyona wan hêj girtiye. Herwiha Demiral da zanîn ku Zarok TV ji aliyê kurdan ve gelekî tê ecibandin û ne bi tenê zarokên kurdan hemû kurdan lê temaşe dikir û wiha got: "Zarok TV ne tenê kanala zarokên kurd e. Maneviyatek bi kurdan re peyda kiribû. Hemû kesî lê temaşe dikir. Çîrokên mezinan ji zarokên xwe re digotin careke din di Zarok TV'yê de lê rast dihatin. Armanca me ew bû ku em kanaleke netewî bo zarokên kurd vekin. Em îro dibînin ku em gihştine wê armanca xwe. Danûstendinên me bi parlementerên HDP, CHP û AKP'ê re didome. Em li bendê ne ku dev ji vê xeletiyê berdin."

**Kordînatorê Azadî TV: Girtina televîzyona me ne qanûnî ye**

Kordînotorê Giştî yê Azadî TV'yê İrfan Uçar, Kordînatora Zarok TV'yê Dilek Demiral, Kordînatorê Jiyan TV'yê İbrahim Aslan derbarê girtina televîzyonên wan de ji BasNûçe'yê re axivîn. Herwiha tekezî li ser wê yekê kirin ku heta niha RTÜK'ê tu ceza hişyarî nedabû wan û ew wê biryarê weke êrîşa li ser medyayê dihesibînin.

Kordînatorê Giştî yê Azadî TV'y ê İrfan Uçar, eşkere kir ku şeva 29'ê mehê di dema televîzyona wan weşana nûçeyên êvarê dikir hat girtin. Herwiha, wan peywendî bi nûnerên RTÜK'ê re kirine û nûnerên RTÜK'ê ji wan re eşkere kirine ku wan derbarê girtina televîzyonan de biryar nestendine. Uçar, tekezî li ser wê yekê kir ku wan zanyariyên derbarê girtina wan de ji nûçeyên AA'yê girtine û AA'yê di nûçeyeke xwe de gotiye zêdetir ji 10 televîzyon li gor Qanûnên Hûkmê Biryarê de hatine girtin û girtina wan televîzyonan jî li gor qanûnên 668 pêk hatiye. Uçar li aliyê din bal kişand ser wê yekê ku heta niha rayedarên dewletê û ti kesî zanyarî nedane parêzerên wan û wiha got: "Ji roja ku televîzyona me girtine em li bendê ne ka wê çi bersivê bidin me. Televîzyonên me li ser navê hiqûqê edelatê girtin. Ev ne hiqûq e ne edalet e û ne jî demokrasî ye. Parêzerên me peywendî bi TÜRKSAT'ê re danîn wan got, 'ev biryar RTÜK'ê daye.' Em bi RTÜK'ê re axivîn, RTÜK'ê got, 'me biryareke bi vî rengî neda ye. Cihgirê Serokwezîr û Berpirsê Medyayê Numan Kurtulmuş biryareke wisa daye. Lîjneya wan belgeyek ji RTÜK'ê re şandiye û RTÜK'ê jî li ser wê ew belge ji TÜRKSAT'ê re şandiye' me xwest wê belgeyê ji me jî re bişînin lê neşandin û weşana me û televîzyonên din girtine. "




**Jiyan TV: Ev êrîşeke li ser medya kurdî bû**

Yekem televîzyona ku tenê bi zazakî weşanê dike Jiyan TV jî di 29'ê mehê de hatibû girtin. Kordînatorê Giştî yê Jiyan TV'yê İbrahim Aslan jî derbarê girtina televîzyona wan de axivî girtina televîzyonan bi tûndî rexne kir. Herwiha, Aslan amaje li ser wê çendê kir ku televîzyona wan li ser biryara 668'an rewşa awarte destûrê hatiye girtin. Aslan destnîşan kir ku ji ber rewşa awarte heye ew nikarin doza mafê xwe bikin û tenê dikarin serî li Dadgeha Bilind bidin. Herwiha heta ku ji wan re tu teblîxat negihêje ber destê wan ew nikarin serê li Dadgeha Bilind jî bidin û ew niha li benda wê yekê ne ku teblîxat bê ji wan re. Aslan amaje li ser wê çendê kir ku malperên televîzyonên wan jî hatine qedexekirin û ew nikarin xwe bigihînin xwîner û bînerên xwe. Aslan navê kanal û televîzyonên hatine girtin bi bîr xist û wiha got: "Ev êrîşeke li ser medyaya kurdî bû, medyaya pirreng jî kirin armanc, İMC TV û Hayat TV jî kirin armanc. Em di wê baweriyê de kurdî kirin armanc. Em vê yekê ji girtina Zarok TV'yê fêm dikin. Em û Zarok TV di heman avahiyê de ne. Bi tenê ji bo zarokan weşanê dike. Armanca wan ew e ku zarokên kurdî bi zimanê xwe biaxivin û wan fêrî zimanê wan bike. Ew jî bi biryara rewşa awarte ya 668'an hatiye girtin. Li gor wê qanûnê Zarok TV jî metirsiye ji bo serweriya dewletê û parçebûna wê. "

**'Me hewl da em zazakî li ser piyan bihêlin'**

Aslan di berdewamiya axaftina xwe de ragihand ku piştî derbeyê, fişareke zêde li ser medyayê peyda bûye û ji bilî medya kurdî fişar li ser medya navendî û medyaya nêzîkî hikûmetê jî çêbûye. Herwiha medyaya navendî girtina 12 televîzyonan weke nûçe jî nedîtiye û tirsiyaye ku nûçeyekê li ser girtina televîzyonên kurdî bide. Herwiha gelek rojnamegerên medyaya navendî ji kar hatine derxistin. Aslan da zanîn ku Jiyan TV yekem kanala zazakî ye û NY û UNESCO jî piştevaniya weşana bi zazakî dikin lewre metirsî li ser zazakî heye ku bibe zimanekî mirî. Aslan wiha berdewam kir: "Lehçeya zazakî di nav zimanên metirsî li ser e cih digre. Ev yek di raporên NY'yê jî de heye. Bi weşana xwe me dixwest em vî zimanî li ser piyan bihêlin. Li Kurdistanê û li dinyayê bi tenê kanala me weşana zazakî dike. Hin televîzyon hene cih didin hin programên zazakî lê weşana televîzyona me ji sedî 80'ê bi zazakî bû. Armanca me ew bû ku em zazakî li ser piyan bihêlin û nehêlin wenda bibe û li nav xelkê belav bibe. Di bernameyê xwe jî de me cih dida xelkên ku bi zazakî qise dikin. 7 meh e em vê weşanê dikin heta niha tu ceza li me nehatiye birîn ji aliyê RTÜK'ê ve. Li ser qanûnên rewşa awarte weşana me ji hat qutkirin."


İrfan Uçar
Dilek Demiral
İbrahim Aslan



# Awê roşnayî ya

Ehmed Dirihî

Vateyê verînanê ma yê; "Awê heyat a, awê roşnayî ya, awê dîn û dinya ya, awê hem nîmet a, hem afat a, awê, herri, hewa û adir. Nê çareme bingeyê esasînî yê heyatê. Qiralêkê Seylanîyan 3500 serre Verê Îsayî, berkoleyê xo ser o wina dayo nuştiş, "Her dalpayake ha varena, hetanî xizmetê însanan nêkero, meverdê wa şêro behr!"

Dinya de 1 milyon 360 milyon km³ awê esta. Na awê re % 95,5 awa solin a. % 2,2 awa koyê cemedî ya. % 2,3 awa werî, awdane û endustrî de dîyayena desta. Potansîyelê awa dinya ke ha dîyena desta 42 hezar km³/serr a. Serê merdimî 7342 m³ awê kuwena. Brezilya wayîrê % 12,3 na awê ya. Ayê diyine % 10,2 ya Rusya ya.

Awê êdî bîya yew nîşaneya zengînîye. Goreyê peymeyê enternasyonalî:

Welate ke wayîrê awê 10 000 m³/kes/serr > zêdêr bibo, zengînê awêyo.

Ê ke wayîrê 3 000 < awê < 10 000 m³/kes/serr bibo, awa înan besbîyayeya.

Ê ke wayîrê 1 000 < awê < 3000 m³/kes/serr bibo, awa înan bese nêkena.

Ê ke wayîrê awê < 1 000 m³/kes/serr ra kêmîyêr bibo, sey feqîrê awê name dîyeno.

Tirkîya de serê merdimî 1642 m³ awê kuwena. Yanî awa Tirkîya bese nêkena.

Dewleta kurdan çinîya, la ew beşkî dewletê xu pîyerani, awa Kurdistan şarî kurdan ra besbîyayeya. Goreyê raporê Unescoyî, Finlanda, wayirê awa werî ya tewr weş a. Dime ra Kanada û Zelandaya Newîye yenî. Tirkîya rêza 45. de ca gêna. Awa en qirêjine zî, ya Belçika ya.

**Persê awa dinya**

Zafînê welatê dinyayî, ewro ra hê kemaneya awê rê, ri bi ri yê. Zêdebîyayîşê nifusî, persê fînansmanî û cîwarî, piroblemê awê serre bi serre hêna hê zêdînenî. Na seserra peyine de; nifusê dinya hîrela, gurenayîşê awê hewtla zêdîya yo. Welatê dinya, ê piroblemê awê ke, seserra vera ma de raşt ci yenî, nêşkenî pey awê zêdekerdişa tenya, ci rê çare bivînî. Yew het a awê zêdekerdişi, qontrolê polîtîqaya awê waştiş û heto bîn a zî qalîteya awê, ganê bîyero pawitiş. Hemeyê dinya de qirêjayî, bedelîyayîşê hewayî, îsraf û polîtîkaya awê qîm / bese nêkenê; qalîte û mîqdarê awa ke yena gurênayîşi bipawî yo. Awa dinya, vêra vêr a ha bena kêmî û qirêjin.

Ewro goreyê Koma Miletan (KM), her serre qirêjbîyayîşê awê ra 200 mîlyon însan nêweş kuwenî û 2,2 mîlyon însanî zî hê mirenê. Serra 2050'an de nifusê dinya reseno 9,3 mîlyari. 60 dewletan de 7 mîlyarî kes, verba tenganîya awê ra ri bi ri manenî.

KM ma pey hesneno ke, çimeyê xuzayî ko bikêmîyî, biginî sinorê qedîyayîşî. Mîyanê miletan de heqê awê ser o pênêkerdîşi, ko bireso dereceyê pêrodayîşî û şerî. Seba çareserîya ney, tesîsanê awê rê ganî her serre, 50- 100 mîlyar dolar rafîyo.

**Rojê Awî Dinya**

Seba persê awa dinya, reya verîn, 1977'an de Mar Del Plata de 'Konferansa Awê' virazîya. 1992'an de Dublin de 'Konferansa Awê û Dorûverî ya Mîyanê Miletan' virazîya. Averberdiş û îdareya awê ser o pilanviraştoxî,



qerardayoxî û kesê ke awê gurênenê, hemin mîyanê na xebate de cayê xo guretîbî. 1992'an de KM 'Konferansa Awêrşîyayîş û Cîwarî' de, awa werî ardbi rojev. Dezgeyê Umûmîyê KM, 22 Sibate 1993'an de, her serre 22 Adare, "Rojê Awî Dinya" îlan kerd. KM her serre, pawitiş û awerberdişê aw û çeman ser o, temayan belî kena û seba organîzasyonan zî nîşan dana ke, na roje de wa nînan bikerî:

- Problemanê awa werî ser o, bivinderên.
- Giranîyedayîş û pawitişê aw û çeman ser o, şarê xo hîşyar bikerên.
- Hikûmat, ajansê înternasyonalî, sektoro xusûsî, dezgeyî û organîzasyonê sîvîlî, pêro piya wa tede ca bigêrî û gureyan xu mîyan de têdesta bare bikerî.
- Medya de programanê perwerdeya kulturê awî, bivirazên.
- Na xebate xwe de; giranê bidên, wendekar û ciwanan.
- Averberdiş û pawitişê aw û çeman ser o konferans, semîner û rafîştgehan bivirazên.
- Semedê peyhesinayîşê şarî xu, piromosyonan vila bikerên.

1994 - Giranîyê pawitişê awê dayîş, gureyê her kesî yo. (Girîngî pê dana aw û çeman, karê her kesî ye)

1995 - Cinî û awê (Jin û aw)

1996 - Seba bajaranê teyşanan awê (Ji bo bajarên tîmayî aw)

1997 - Awa dinyayî: Gelo qîm kena? (Ava dinê: Gelo bes e?)

1998 - Awa binerdî - Çimeyo nêasaye (Karêz- Çawkanîyê nexuyayî)

1999 - Herkes biniya awê de cuyeno (Herkes li biniya awê dijî)

2000 - Seba seserra 21'în awê (Ji bo sedsala 21'în aw)

2001 - Awê û weşîye (Aw û tenduristî)

2002 - Seba awerşîyayîşî awê (Ji bo pêşveçûnê aw)

2003 - Dema ameyox de awê (Ji bo paşerojê aw)

2004 - Awê û afat (Aw û afat.)

2005 - Seba cuye awê (Jibo jîyanê aw)

2006 - Kultur û awê (Kultur û aw, cîhanşumûlî çalakîyé mehellîyî)

2007 - Xelayê awê vero vinertiş (Têkoşîna bi xelayê awê)

2008 - Awê û weşîyê şarî (Aw û xweşîyê awê)

2009 - Awî ke sinoran ser ra vîyarenî (Avên ku li ser sinoran derbas dibin)

2010 - Qalîteyê awî (Qalîteyê awê)

2011 - Seba şaristanan awê (Ji bo bajaran aw)

2012 - Asayîşê zad û awê (Ewleyîyê xurek û awê)

2013 - Paştgerîyê awî (Piştgirîyê awê)

2014 - Enerjî û awê (Enerjî û aw)

2015 - Aw û awerşîyayîşê daîmîyê

2016 - Îstîhdam û awê (Îstîhdam û aw)

2017 - Gendaw (Ava awêtî)

Seke şima ney babetan ra zî vînenî, Koma Miletan her serre yewbînan ra weşêr babete ramojnena û her dewlet zî ney ser o programê xu virazena, a babete ser o seba çareserîyê awî xu ser, projeyan virazenî.

Serra Awa Werî

2003 - Koma miletan na serre, sey Serra Awî Dinya name da û mabeynê, 16 - 23 Adar de ameybî pîrozkerdişi. Her milet, persê awa xu ard ziwan û çareyan ser xebetiyayî.

**Konseya Awî Dinya**

Serrê 1996î Marsîlya de merkezê ney nîya pîyêra. Platformeka zafmiletî ya. Merkezê konseyî ho Marsîlya do. Forum ça de bivirazîyo, fînansman zî heqê ey welatî yo. Hîrê serre de reyek, yewna welat de, ha Foruma Awî Dinya saz kena. Na xebatê xu de wazena ke; Persê awê bidîyo pêhesnayiş, seba çareserîyê destek / paştgêrî dana. Bi pêşnîyazan a, bala rayaumumî ancena. Qerarên hîdropolîtîk nana pîyera.

**Foruma Awa dinya**

1997 - Marakeş, Vision for Water, Life and the Environment (Vîzyonê cîware, cuye û awê)

2000 - Lahey, From Vision to Action (Vîzyon ra çalakîye)

2003 - Kyoto & Shiga & Osaka, A Forum with a Difference (Forumo ke cîyayo)

2006 - Mexico, Local Actions for a Global Challenge

2009 - İstanbul, Bridging Divides for Water (Pirdê ke semedê awa roniyayî)

2012 - Marsilya, Solutions for Water (Seba awê, çareserîyî)

2015 - Gyongju, Water for our Future (Seba ameyoxê ma, awê)

Sazîyên awî yê dinya ke na xebate de ca genî:

-(CIDA) Canadian International Development Agency (Ajansa Awêrşîyayîşê Kanadayê ya Enternasyonali)

-(IAWQ) International Association on Water. (Komela Enternasyonalî ya Qalîteyê Awî)

-(ICID) International Commision on Irrigation & Drainage. (Komîsyona Drenajî û Awdayîşî ya Enternasyonalî)

-(IUCN) International Union for Conservation of Nature. (Yewîyîya Konservasyonê Dinyayî)

-(IWRA) International Water Resources Association. (Yewîyîya Çimeyanê Awî ya Enternasyonalî)

-(IWSA) International Water Supply Association. (Yewîyîya Suplayî ya Enternasyonalî)

-(UNDP) United Nations Development Programme. (Programê Awêrşîyayîşê Koma Miletan)

# Deriyên Xana Hasan Paşa tê girtin?

Sara Pîranîj

**Bazirgan û kasibên Xana Hasan Paşaya Amedê ji ber îhtîmala girtina xanê nîgeranin. Tê gotin ji ber ku metirsiya xirabbûna xanê, Midûriyeta Giştî yê Weqfan li xanê dest bi restorasyonê bike. Bazirgan û kasib jî diyar kirin ku heger restorasyon dest-pêbike, ew dê mexdûr bibin. Ew ji ber qedex eû aloziyên li Sûrê gelekî zerar kirine. Heger rastorasyon bê kirin û xan bê girtin, ew êdî nikarin li wê derê kar xwe bi rê ve bibin.**




Xana Hasan Paşa ya li Amedê di salên 1572 û 1575'an de ji aliyê Waliyê Amedê Wezîrzade Hasan Paşa ve li Sûra Amedê hatiye çêkirin. Xana Hasan Paşa ji bo Amedê cihekî hêja heye. Xan hem ji bo turîzmê û hem jî ji bo bazirganiyê giring e. Di xanê de 91 dikanên cûbecûr hene.

Bazirganiya li xanê ji ber bûyerên 6-7'ê Cotmehê rawestiya bû. Piştê vê bûyerê ji ber aloziyan qedexe hatibû ragihandin. Kasibên xanê mexdûr bibûn. Niha jî tê gotin ku xan bê restorê kirin û ji ber vê dê bê girtin. Bazirgan û karker jî ji ber îhtîmala girtina xanê nîgeran in. Heger xan bê girtin, bazirgan dê îflas bikin û karker jî dê bêkar bimînin.

**Girtina xanê mexdûriyetê dê zêdetir bike**

Bazirgan û kasibên Sûrê derbarê restorasyon û girtina vê de eşkere kirin ku hem xan û hem jî ew dê gelek mexdûr bibin. Wekî tê zanîn Xana Hasan Paşa di navbera salên 2006 û 2007'an de hatibû restorê kirin û ji wê demê ve ji sedî 5'ê xanê hîn jî restorê nebûye. Xana Hasana Paşa hem ji bo xelkê Amedê û hem jî ji bo bazirganiyê navendeke muhîm e. Ji ber ku hem turîstên bîyanî û hem jî xelk xwecih zêdetir serdanê xanê dikin û li vê derê danûstandine dikin û geştiyar zêdettir ji bo Xana Hasan Paşayê diçin Sûrê.

Bazirgan û karkerên Xanê wiha dibêjin: "Walîtî, Midûriyeta Turîzm û Çandê û Midûriyeta Bajêr û Derdor derbarê amadekariya projeyê de ji me re hîn jî tiştekî negotine. Em derbarê projeyê hin tiştekî nizanin. Heger derbarê mijarê daxuyaniyekê fermî bihata dayîn, em jî li gorî planekê ji xwe re çêkin. Wekî ku tê zanîn Sûr ji ber qedexeyan 4 meh û nîvan girtibû û em gelekî mexdûr bibûn. Heger xan ji bo restorasyonê bê girtin, mexdûriyeta me dê zêdetir bibe."

Bazirganê xanê Ali Göçer, Sivirvan Kemal, Ali û Rêveberê Xana Hasan Paşayê Ali Sait Özkan û Karker İlkay Hanım derbarê vê mijarê de raman, nigeranî û rewşa xwe de agahiyan dan BasNûçe'yê.

**Özkan: Em ji restorasyonê agahdar in**

Rêveberê Xana Hasan Paşayê Ali Sait Özkan bal kişand ser rewşa xanê û ji BasNûçe'yê re nirxand û dibêje ku ew bû 40 salê di Xana Hasan Paşa de bazirganiyê dike. Herwiha ew rêveberê xanê ye. Xan 6 meh girtibû. Lê niha rewşa wê baş e. Hemû tişt hêdî hêdî sererast dibe. Özkan aciziya xwe jî wiha tîne ziman: "Dewletê alîkariya me nekir. Bi tenê 3 hezar lîre pere da me û biryar da ku dê salek ji me kiraya dikanan negirin. Herwiha dema ku Serokwezîr Binali Yıldırım hat Amedê diyar kir ku ew dê 50 hezar lîre bide bazirganan û ew jî bi teqsîtan ev perê dîsa li dewletê vegerîne. Lê tiştekî wisa bibe, dê gelekî baş bibe û bazirganên Sûrê hinek dê rehet bikin. "

Özkan bal dikşîne ser restorasyonê jî û wisa pê de diçe: "Em ji restorasyonê agahdar in. Xan dê restorê bibe. Lê çi wext dest bi restorasyonê bikin, nediyar e û derbarê wê di destê me de ti zanyarî tuneye. Heke xan bê restorekirin, em dê mexdûr nebin. Ji ber ku em êdî fêr bûne. 6 meh xan girtîbû. Ez bawer nakim restorasyon gelek wext bigire û dê di 3-6 mehan de bi dawî bibe. Balkonên xanê bên çêkirin. Ji ber ku balkon şikest û ji wê derê aw dilope. Ez bawer dikim ku piştê restorasyonê ev der dê xweşiktir bê."

**Azad Göçer: Restorasyon wê me mexdûr bike**

Bazirgan Azad Göçer restorasyonê wisa dinirxîne: "Di xanê de dikana min ya kelûpelên otantîk hene. Ez 7 sal û nîvê li vê derê kar dikim. Min derbarê restorasyona xanê hin tişt bihîstin. Me di rojnameyê de dît. Lê tiştekî wisa dê pêk bê yan ne, ne diyar e."

Göçer bal dikşîne ser rewşa xwe û da zanîn ku niha ew jî sekînine ku dê hele çi bibe? Heger tiştekî wisa bê kirin, ew ê gelekî mexdûr bibin. Wan jî ber qedexeyên Sûrê gelekî mexdûr bûbûn û zerar kiribûn. Dema ku li Sûrê qedexe hebû, ew mecbûr mabûn dikanên xwe bigrin. Ew niha hêdî hêdî hewl didin ku rewşa xwe serrast bikin. Heger xan bê girtin, ew nizanin dê çi bikin? Em dê hemû wan kel û pelên xwe bibin ku derê? Tiştekî wisa jî heye; piştê restorasyonê ev der ji bo barzaniyê dê bê vekirin.

Göçer li ser îhtîmala girtina xanê û mexdûriyeta xwe jî wisa dibêje: "Rewşa bazirganan gelekî xerab e û di destê wan de ti tişt nemaye. Bi vê girtinê re li vê derê bazirgan û bazirganî dê bi dawî bibe. Li vê derê 91 dikan hene û di her dikanê de herî kêm 3 kes dişuxilin. Ew dê zerar bide xwediyê kar, karker û malbatan wan. Ew jî herî kêm 2 hezar kes dike. Divê xebata restorasyonê bazirganan mexdûr neke. Heke wisa bibe hem bazîrganî û hem jî xan diqedi."

**İlkay: Dibe ku dewlet dest deyne ser xanê**

Ji karkerên xanê İlkay jî li ser restorasyona xanê û rewşa dikkandaran û dibêje: "Ez ji 9 saliya xwe ve di dikana zîvkarê Xana Hasan Paşayê de kar dikim. Heta qedexeyan rewşa me gelekî baş bû. Beriya qedexeyan ji derveyî bajer tûrist dihatin vê derê. Lê êdî kes naye. Ji ber ku ditirsin. Xelkê me tenê tên vê derê. Ew jî gelekî ditirsin. Dema ku xelk tê jî tişekî nakirin, tenê çay vedixwin û diçin. Li xanê bazîganî nayê kirin. Gelek hevalên me difikirin ku biçin û li cihekî din dikanan vekin. Kes bi van kêşeyan re mijûl nabe. "

İlkay derbarê rewş û tirsa xwe û bazirganan de jî wiha diaxive: "Li nav xanê 91 dikan hene. Metirsiya hemû kesî ew e ku heger em ji wê derê bên derxistin, dibe ku em nikarin vegerin. Dibe ku xan ji bo tiştekî din bê bikaranîn. Bo mînak îhtîmal heye ku xan bibe saziyeke dewlet e. Ji ber ku dikarin bi rehetî vê derê bi kar bînin. Herwiha cihê wê jî pir baş e. Divê ez vê jî bibêjim îhtîmal heye ku ev rast nebe. Hat gotin ku dê piştê cejna qurbanê bi bazirganan re hevdîtinan pêk bînin."

İlkay dide zanin ku Midûriyeta Giştî yê Weqfan hîn jî derbarê vê mijarê de tiştekî negotiye. Lê hemû kes gelekî nîgeran in. Herwiha tê gotin ku kes dê mexdûr nebin. Heger tişteki baş nekin gelekî karker dê bêkar bimînin.

**Kemal: Dewletê alîkariya me nekir**

Sivirvanê xanê Kemal Bakırcı jî bal dikîne ser qedexeyên Sûrê û dibêje ku ji ber bûyerên 6-7'ê Cotmehê vê rewşa bazirganiya Sûra Amedê tevlihev bûye. Piştre vê jî 4-5 meh li Sûrê qedexe hatibû ragihandin. Her du rûdan bazirgan û karkerên Sûrê mehû kirine. Dewletê qet alîkariya wan nekiriye. Bi tenê Midûriyeta Giştî ya Weqfan ji wan 12 meh kiraya dikanan negirtiye. Heger kîreyê ji wan bigirtana, niha xan vala bibû. Xan bê girtin, ew nizanin dê çi bikin. Ne pereyê wan heye û ne jî ew dikarin biçin li cihekî din dikan vekin. Ew jî kêşeyeke mezin e.

Kemal eşkere dike ku restorasyon dê çi qas bidome, ne diyar e. Bo mînak ji bo Mizgefta Mezin gotibûn: 'Restorasyona mizgeftê di du mehan de dê xelas bibe.' Lê 5 sal in restorasyona vê hîn jî didome. Eger restorasyona vê derê xelas bû, dê careke din bidin bazirganan yan ne, ew jî nediyar e. Ji ber ku Midûriyeta Giştî yê Weqfan ji bazirganan kêfweş nîne û dibêjin: 'Hûn zerar didin xanê.'

Kemal ji bo mexdûr nebin jî wisa dibêje: "Heger dixwazin me mexdûr nekin, bila di meha kanûnê de dest bi restorasyonê bikin. Ji ber ku di wan mehan de kar nîne."





## Hêmin Mukriyanî
# Şaîrê yadîgarî şîrîn!

Memê Botî

Devera Mukriyan li Rojhilatê Kurdistanê gelek hunermendên mezin gihandiye. Helbestvan, nivîskar, mûzîkvan û edîbên herêma Mukriyanê gelekî binavûdeng in. Hejar û Hêmin ji nifşekê ne ku wan herduyan jî navên xwe di dîroka edebiyata kurdî de mayinde kirine. Tesîra Hêmin li ser edebiyata soranî gelekî berçav e. Zimanê nivîsîna wî gelekî sade û rewan e û xelkê xwenda û nexwenda jî ji berhemên wî fêhm dikin.

Hêmin Mukriyanî weke hemû şaîran hêviyên xwe di helbestên xwe de rawedike. Lê ew wan hêvî û armancan ji bo gelê xwe re dixwaze. Ew weke helbestvanekî haydar û agadar parek ji barê giran yê bedbextiya gelê xwe bi hemû hest û hîsên xwe yên şaîrane di hemû kêliyan de çi şahî û çi şînê derdibire. Ew hemû tiştên ku di tarîxa gelê xwe de dibîne û hîs dike bi şiyana xwe ya helbestvaniyê derdibire.



Helbestên Hêmin ji destpêkê de derveyî qaliba helbestên demê bûn û ji bo helbastvanên din re pêşeng bû. Tevî ku zimanê helbestên Hêmin evîname bûn lê wî guhê xwe dida ser xebata azadî û çareseriya ji bo xak û welatê xwe û herwisa bala xwe dida ser xwezaya Kurdistanê jî. Hêmin helbestvanê zimanperwer, mezin û serketî, karî rêya pevgirêdana evîn û zanist û têkoşîna jiyana xwe ya edebî bi awayekî serketî derbas bike. Ev yek taybetmendiya helbestên wî ne ku wî digihînin lûtkeya rewanbêjiyê.

Mihemed Emîn Şêxulislamî Mukrî bi leqeba Hêmin yan Hêminê Mukriyanî di bihara sala 1921'ê li Mehabadê ji dayîk bûye û sala 1986'ê li Urmiyê koça dawîn kiriye. Helbestvan, wergêr û nivîskarê kurd Hêmin li gundê Şilan yê Mehabadê ji dayîk bûye. Piştî hînbûna Quranê û pirtûkên seretayî yên farisî û erebî li Mehabadê û çar salan li xaniqah û dibistana Şêx Yûsif Burhan dersên dînî xwendiye. Piştre bi destûra bavê xwe diçe gundê Kolîce û çend salan li cem Mele Ehmedê Fozî dersê dixwîne. Sala 1938'ê vedigere gundê bavê xwe Şilanavayê. Bi roj karê cotkariyê kiriye û êvaran jî heta derengiyê şevê kitêbên edebî yên kurdî û farisî xwendine. Her sal çendîn caran çûye Mehabadê û beşdarî civînên helbest û edebiyatê bûye. Di wan civînan de bi kesayetên di warê helbest û edebiyatê re rûniştiye û rabûye û ew nas kirine.

Ji ber liyaqet û şiyana xwe bala şexsiyetên navdar yên Mehabadê kişandiye. Hêmin di heyama ciwaniya xwe de remz û nihêniyên edebiyata kurdî û helbestê fam kiriye û bi xwe jî dest bi helbestan kiriye. Helbestên wî ji aliyê ciwanan ve hatin pêşwazîkirin û gelek kesan bala xwe daye ser wî. Bavê wî bi xwe jî helbestvan bûye lê nedixwest ku kurê wî bibe helbestvan. Lê şiyana wî ya xwedêdayî ew ber bi helbestê ve kişand ku di dawiyê de ew gihîşte çavkaniya zelal ya însiyatîva di teknîka helbest û helbedtvaniyê de. Di sala 1942'ê li gel hevalê xwe Hejar tevlî Komela Jiyanewey Kurd dibe. Ew di Komara Mehabadê de weke şaîrê netewî yê kurd hatiye binavkirin. Bûye sekretêrê Hacî Baba Şêx, Serokwezîrê Himûmeta Komarê.

Piştî têkçûna Komarê Hêmin li bajarê Silêmaniyê niştecih bûye. Li wê derê hatiye girtin û paşê bi nehênî vegeriyaya Laçînê. Piştî peymana aştiyê di navbera Partiya Demokrata Kurdistanê (PDK) û hikûmeta Iraqê sala 1970'ê Hêmin vegeriya Bexdayê û li wir maye. Li wir bûye endamekî çalak yê akademiya zanistê.

Piştî ruxana rejîma Pehlewî (1979) dîsa tevlî Komîteya Navendî ya Partiya Demokrata Kurdistanê (PDKÎ) bûye. Piştî sala 1983'ê li Îranê weşanxaneyeke kurdî bi navê Weşanaxaneya Selahedînê Eyûbî li Urmiyê hate vekirin û di 1985'an de mehnameya Sirwe çap kir, Hêmin heta dema wefata xwe berpirsê vê mehnameyê bû. Hêmin di serdema rejîma Pehlewî de jî di rojnameyên kurdî yên ku li Tehranê dihatin çapkirin jî dinivîsî. Di rojnameyên Kurdistan, Hawarî Kurd, Hawarî Niştiman, Gerogalî Mindalan, Agir û Helaleyê re jî hemkarî kiriye.

Jin di helbestên Hêmin de roleke giring dilîze, ciwanbûna jinê îlhambexşa helbestvan e. Di seranserî dîwana Hêmin de ew rastî derdikeve ber çavên xwendekaran ku tablo û bedewbûna jinê ya ku ew resm dike bêhempa û nadir in. Ji bo mamoate Hêmin re jin tenê serçaviya ilhamê nîne, ew ji bo rizgariya jinê jî helbestan dibêje û dixwaze jin xwedan mafê xwe yê insanî be û gelek caran li hemberî zilm û zordariya li ser jinan dengê xwe bilind dike. Helbestên Hêmin li ser jinan, nimûneya berceste ya helbestên kurdî ne.

**Hêmin di helbesta "Yadîgarî Şîrîn" de dibêje:**

*Lade çaşîwî reşît ba derkewê kulmî geşit*
*Çun le qernî stema zor eyb e ew rûgirtine*

Hêmin ji jinê hez dike lê ew ji bo rizgarî û azadiya civaka xelkê zêdetir bala xwe dide civakê. Hêmin ji netewa xwe hez dike tevî vê jî ji ti netewa din kîn û nefret nake. Hêmin tenê li dûr ranane û temaşey jiyan û xebata gel nake yan wisa nîne ku tenê ji bo gul û bilbilê re helbestan bibêje. Hêmin ev esl qebûl kiriye ku erkê helbestên şaîr gelekî giring in. Wî bi hemû hêza xwe û bi nivîsîna helbestên xwe ve pêngaveke mezin di meydana xebatê de avêtiye û ber bi asoyeke ronî ya dijî neheqiyê û dûr li her jarî û tarîtiyê ve meçiyaye. Her ji destpêka xebata xwe de mezinbûn û wêrekbûna wî nimayan bûye.

*Ger çi min le zincîr û tenaf û dar û bend nakim niye*
*Let letim ken bimkujin hêşte delêm kurd im emin*

Zimanê helbestên Hêmin kurdiyeke bedew û paqij e. Di zimanê helbestên wî de bêjeyên bîyanî cih nagirin û wisa nivîsiye ku hem xelkê xwende û hem jî xelkê nexwende jê têbigihîjin. Hêmin bi kurdiya herêma Mukrî nivîsiye û tesîra zimanê wî li ser soranî ya edebî gelekî xuya ye.

Hêmin evîndarê sirûşt û deşt û çiyayên Kurdistanê ye jî. Sirûşta welatê xwe baş nas kiriye û bi wê re perwerde bûye. Gelek ji helbestên wî nîşan didin ku ew sirûşt û ciwaniyên Kurdistanê baş nas dike û di wî warî de şareza bûye.

Berhemên Hêmin: *Tarîk û Ron, Paşerok, Naley Cudayî, Paşerokî Mamoste Hêmin, Tohfey Mozeferiye (werger), Efsane Kurdiyekan (werger), Çepkêk Gul û Çepkêk Nêrgiz, Şazade û Geda, Qelay Dimdim, Hewarî Xalî.*

Hêmin di sala 1986'ê koça dawîn kiriye û li goristana hunermendan ya Sultan Budaqa Mehabadê hatiye veşartin.

# ZİMANGEH


Abdullah Kıran

Di vê rêzenivîsê de emê li ser çend têgehên civakî, xizmatî û felsefî rawestin û van peyv û têgehan li gel hevwateyên îngilîzî û tirkî berawerd bikin.

Etkileşim (Interaction): Hevbandorî
1)Rewşa li ser hevdu bandor nîşandana kes an tiştan.
2)Têkiliya sedemî û encamî.
3)Di kîmya û fizîkê de, li ser hevdu bandor nîşandana maddeyên ku vaqayekê pêk tînin.
Mînak: Profesorê me di dersa xwe de giraniyeke mezin dida fêrbûna hevbandorî û dixwest ku herkes bipeyive.
Sosyal etkileşim (Social interaction): Hevbandora civakî; rewşa ku mirov û civat hev dinasin û bi vî awayî li ser hevdu bandor nîşan didin; çand û agahiyên xwe bi hev re parî dikin.
Sosyal etkileşim programı (Social interaction programme): Bernameya hevbandora civakî
Kaba (Rude): Zirr
1)Tiştê ku stûr e an libên wî gir in
2)Tiştê ku hema wusa ji ser ve, bi lez û bez hatiye çêkirin; tiştê ku bi hurgilî li ser nehatiye fikirîn û rawestan.
3)Kesê bêpîr û bêhurmet, kesê ku haya wî ji adetên civakî û bajarwerî (medenî) tune.
4)Mec. kesê nenecirandî.
Mînak: Ew kevir nabe, çimkî gellek zir e, hinekî din jî binecirîne.
Mînak: Min ji te re got zilamekî bîne, te ev kesê zirr û nenecirandî kir bela serê min.
Mînak: Ez do rastî zilamekî gellek zirr hatim, bêpîr û nezanek bû.
Mînak: Tu çi mirovek zirr î lo! Mirov piçekê jî jinan re hurmet nîşan dide.
Kabalık (Rudeness): Zirrîtî
1)Rewşa zirrbûnî
2)Dan û standina ku bi kesên zirr dikeve.
Mînak: De bes e te zirrîtî kir, evqas jî nabe.
Kabalık etmek (Behave rudely): Bi zirrîtî tevgerîn; rewşa bi zirrîtî dan û standinê.
Mînak: Min sed caran ji te re got, bi zirrîtî tevnegere!
Üvey baba (Stepfather): Zirrbav; rewşa ku diya kesekî piştî bavê wî/ wê bi kesekî din re zewiciye; kesê ku ne bavê heq e.
Mînak: Vê zilma ku zirrbavê wî lê dikir, bi tu awayî nedihat kişandin.
Üvey evlat (Foster child): Kurhilî; zarokê ku ji jin û mêran, an ji jinê an jî ji mêr e; zarokê ku ne ji dê û bavekî ye. Eger zarok kur be, hingê em dibêjin "kurhilî," belê gava ku keç be, em dikarin ji bo wê jî bêjin "keçhilî."
Mînak: Ma lawo ez kurhiliyê te me, tu wusa fortan davêjî!
Mînak: Xezal ne keça min a heq e; ew keçhiliya min e.
İsyancı (Rebel): Serhildêr
1)Li hemeber pergala heyî û dewletê serî rakirin. û
2)Emrekî bi cih neanîn û serî rakirin.
İsyancı lideri (The leader of rebels): Serokê serhildêran; kesê ku serokatiya hêzêke serhildêr dike.
Mînak: Di şer de serokê serhildêran jî hat kuştin, hemû serhildêr tar û mar bûn.
Mînak: Şer germ bû û hêzên serhildêr cardin hêzên li dewletê şikandin.
Mînak: Kî gotiye ku ewê dewlet serî li ber pêxwas û serhildêran deyne?
Paydaş (partner): Pardar; kesê ku li ser malekî hevpar e, şirîk.
Paydaşlık (stakeholdership): Pardarî; rewşa pardar bûnê.
Paydaşlar demokrasisi (stakeholders democracy): Demokrasiya Pardaran
Felsefeci (Philosopher): Felsefenas
1)Kesê ku karê lêkolînên felsefeyî dike.
2)Mamosteyê felsefê. Di zimanê me de hin kes ji bo vê gotinê "felsefevan" dibêjin, ku bi ya min şaş e. Paşpirtika me ya ku gotinên wek; "şivan, gavan, golikvan, nêçîrvan" û hwd. jê çêdibin, li bejn û bala peyva "felsefê" nayê. Loma me çêtir dît ku em li ser paşpirtika "nas" herin û bêjin felsefenas.
Mînak: Felsefenasî ne karek wusa hêsan e, xebatek dûr û dirêj dixwaze.
Felsefeciler grubu (Philosopher group): Koma Felsefenasan; koma ku ji felsefenasan pêk tê.
Felsefeciler Derneği (Philosopher Assosication): Komela Felsefenasan
Têbinî: Ji bo rexne, gazin, lome û pêşniyazên xwe ji min re binivîsin: 29abdullah@gmail.com

# Stranbêjê şahiyan gulên civatê ne





Dilşah Amedî

Şahiya dawetên zewacê, nerîteyeke qedîm a kurdan e. Di dawetan de liberkirina cil û bergan, reqis, hevnasîn, xemilandin, gotina stranan helperên hêmanên serekî yê dawetên kurdan in. Helbet dawet û lîstîk bê stranbêj û hunermand nabin. Ji ber ku di vê roja girîng ya ciwanên li ber zewacê xelk dixwazin kêf û şahiyê bikin. Helbet bê stran û stranbêj jî kêf û şahî nabin.

Dema ku şahî tê danîn, malbat li stranbejên baş û bi coş digerin. Stranbêj şahiyan dixemilînin, ew wek gulên civakê ne, ew berpirsê kêf û şahiyên civakê ne. Ji ber vê yekê ew di nav civaka kurd de ew bi rûmetî tên pêşwazîkirin. Heger li şahiyan stranbêj baş bin, mêvan aciz nabin û dawet bi awayek kêf û coş derbas dibe. Mêvan jî di dawetê de bi dilê xwe govendê digerînin. Stranbêjên dawetê bi awayek xweş û dilgerê bistrîne, mêvan heta dawiya dawetê li cihê xwe rûnanin. Piştî dawetê jî bîranînên şahiyê tên axaftin û di cihê xwe yê taybet her diparêzin. Di vê yekê de jî rola stranbêjan heye.

Li Kurdistanê hin hunermend bi taybetî bi stranbêjiya şahiyan navdar in. Pisporiya wan şahiyên zewacê ne. Repertûwara wan li ser stranên şahiyê hatine honandin.

Bismîlo Çeto (Çetoyê Bismilê) û ji Koma Gel Menice Güneş di vî warî de navdar in û wek stêrkên şahiya ne. Çeto û Menice hunera xwe û jiyana xwe bi BasNûçe'yê re parve kirin.

**Çeto: Hunermendiya şahiyan karê malbatê ye**

Çetoyê Bismîlê xwe da nasîn û got: "Navê min Çeto ye û paşnavê min Tosun e. Lê ji min re Çetoyê Bîsmîllî tê gotin. Di sala 1984'an de li Bîsmîla navçeya Amedê ji dayîk bûme. Ez ji zarokatiya xwe ve li sazê didim. Hertim bala min li ser sazê bû." Çeto heta pola 10'mîn li Lîseya Hûneriya Anatoliya Amedê xwendiye, lê nîvcî hiştiye. Ji ber şahî û konseran, ew nikare biçe dibistanê û ew mecbûr may dev ji xwendiye berdaye.

Çeto serboriya xwe ya mûzîkê wihsa tîne ziman: "Hunermendiya şahiyan karê malbatê bû. Malbata min vê karî dikir. Ez jî ji wan fêrî vî karî bûm. Bire min yê mezin mamoste bû. Wî hertim li sazê dixist. Apê min û 3 xalê min li sazê didan. Bavê min jî sazbend bû. Ez ji wan fêrî vê karê bûm. Dema ku evar dibû, dihatin cem hev û li sazê didan." Çeto serpehatiya xwe û sazê jî wisa bibîr tîne: "Dema ku ez zarok bûm, wan li sazê didan û min jî stran digotin. Li malê hemû kes stran digot û li sazê didan. Ev bandor li ser min hişt û min jî dest bi vê hunerê kir. Min di destpekê de sazê girt." Çeto neçûyên muzîkê û li kursan fêrî sazê nebûye: "Dema ku min dest bi stranbêjiya dawetê kir, ez bêkar bûm. Niha ez zewicîme û du zarokên min hene. Dema ku ez bêkar jî bûm min ji sazê gelekî hez dikir û vê hezkirina min hîn jî didome. Min bi piranî wextê xwe li dawetan derbas kiriye û hezkirina min ya sazê rojbiroj zêdetir bû. Ez ji karê xwe gelekî hez dikim. Du zarokên min hene, lê saz jî zarokê min yê sêyem e. Dema ku ez bêkar bûm, pir ferq nedikir. Lê niha xwedî malbat im û saz jêderka debara me ye. Em debara xwe bi sazê dikin."

> Stranbêjên dawetan muzîkjeniya li nava kurdan berbelav in. Gelek hunermendên kurd bi îcrakirina vê hunerê re debara xwe dikin. Hunermend û stranbêjên şahiyan derbarê karê xwe ji BasNûçe'yê re axivîn û serboriyên xwe anîn ziman.

**'Saz jî zarokê min e'**

Çeto li Amedê dijî, li bajarên wek Antalya, Stenbolê û Îzmîrê jî beşdarî dawetan bûye. Dema ku em ji bo bernameyê derdikevin derve yê bajêr ji bo dû şevan 6 hezar lîre qezenc dikin."

Çeto pîyasaya karê xwe berawird dike û dibêje di pîyasê de hin tişt guhertine. Stranên 5-10 salê berê û niha gelekî cûda ne. Berê 5-6 lîstîk hebûn. Niha hejmara wan zêde bûye. Wan lîstîk û stranan hinek guhertine. Ew hertim tiştên nû û cuda çêdikin. Ew hin listekên nû kişf dikin. Stranên berê ji bo nifşên nihayê nayên gotin.

Çeto behsa nerîtên dawet û şahiyên kurdan jî wiha dike: "Me hîn jî nerîtên xwe yên dawetan wenda nekirine û me destûr neda winda bibe jî. Ji derveyê welat jî ji me re telefon dikin û dibêjin: 'Werin daweta me.' Kêfa gelek mirovan ji çanda me tê. 20 sal in ez vî karî dikim û em dê vê nerîta xwe bidomînin."

**Menice Güneş: Ji zaroktiyê ve ez bi kurdî distirêm**

Menicê Güneş endama Koma Gel e. Ew kom ji du jinên staranbêjan pêk tê. Ew wek jinekî stranbêj li ser huner û koma xwe wisa dibêje: "Ez bi xwe ji Oramerê me. Navê hevkara min Meryem e. Em ji sala 1997'an virve di Koma Gel da ne. 19 sal in ez vî karî dikim. Çand û hunera gelê kurd girîng e, wextê ku mirov stranên xwe dibêjin berê her tiştekî bi zimanê dayika xwe distire."

Güneş ji wek Çeto ji zarokatiya xwe de dest bi xwendina stranan kiriye. Dapîr û bapîrên wê jî stranbêj bûne. Ji biçûktiya xwe ve bi kurdî stranan gotiye: "Ez bi stranbêjiya kurdî vê gelek serbilind im." Menice di sala 2012'an de jî li bajarê Stenbolê albûmek jî derxistiye. Ew di nava salan de di karê hunerê de gelekî pêş ketiye. Menice dijêje ew bi gel, ferheng û zimanê xwe re gelekî serbilind e. Heta vê qonaxê bi stran û gelê xwe re hatine.

Hunermend Menice Güneş derbarê debara xwe jî wisa dibêje: "Em bi xwe 5 xwişk û 2 bira ne. Em debara xwe bi vê hunerê dikin. Ez heta sala 2007'an gelekî xebitim. Me albûm derxist. Malbata min, malbata hevkarên min yê komê Meryem û Zekî gelekî alîkariya me kirin. Beriya derxistina albûmê me navê koma xwe danî Koma Gel."

Menice dibêje 'ji ber ku jin in gelek kes bi koma wan matmayî' dimînin: "Ji ber ku civaka mêran jinê xwe dixin bindest, keçikê me pêş nakevin. Hevalên min her dibêjin 'tu çawa bûyî hunermendi, çawa destûr dane te?'

